BasNûçe
HERDEM RASTÎ
ISSN 2148-5305
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 107 20 - 26 Hazîran 2016 basnuce.com

Dewran Xerzanî

## Ji bo azadiyê bang dikim



R16

# Li Rojava Operation NATO





Piştevaniya Hevpeymaniya Navdewletî ya li şerê dijî DAIŞ'ê de ji bo hêzên kurd li Rojava werdigere rengekî nû. Amerîka, Almanya, Fransa, û welatên din yên NATO'yê hêzên taybet ê leşkerî dişînin Rojava. Li bajarên Hasekê, Kobanê û Eyn Îsa balafirxaneyên leşkerî tên avakirin. Leşkerên taybet ên hevpeymaniya navdewletî beşdarî şerê Minbicê jî dibin û koordinasyona operasyonê dikin.

Rojava ji niha ve dibe heremeke ku NATO naxwaze ji dest berde. Çavdêrên siyasî dibêjin ji bo ku hêzên navdewletî li Rojava piştgiriya siyasî bidin hêzên kurd divê li heremê rejimek demokratîk bê tesîskirin. Operasyonên NATO'yê yên li Rojava bi rêya Herema Kurdistanê ve tê kirin û ji niha diyar dibe ku wê di pêşerojê de di navbera Başûr û Rojava de nêzîkatiyekî peyda bibe.

R02-3

## Ji nû ve Proseya Çareseriyê?

R15

## Dema reformên dijî gendeliyê

R11

## Jin amadekariyan serxwebûnê dikin

R12

Zazakî

## Diyarbekir de kûrsê soranki

R15

## Siyamend Îbrahim: Wê Başûr û Rojava bibin yek



"Ji bo şandina nefta Rojhilata Navîn bo Ewropayê xetên nû lazim in. Yên heyî kar nakin û bûne hokara nakokiyan. Mimkun e ji aliyê Hesekê, Dêrazorê, Raqqayê û heta ser Deryaspî bernameyek bê danîn.

R08-9

Mesrûr Barzanî:

## Divê Iraq bibe 3 parçe

Rawêjkarê Encûmena Asayîşa Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî ragihand ku Iraqa Federal êdî bi kêr nayê, divê li Iraqê di navbera kurd, şîe û sûnneyan de pergaleke parvekirî were avakirin.



R05



# NATO li Rojava bicih dibe

Mehmet Salih Batırhan

Piştevaniya Hevpeymaniya Navdewletî ya li şerê dijî DAIŞ'ê de ji bo hêzên kurd li Rojava werdigere rengekî nû. Hat zanîn ku DYA, Almanya, Fransa, û welatên din yên NATO'yê hêzên taybet ê leşkerî şandine Rojava û li bajarê Kobanê û Eyn Îsa amadekariyên avadankirina balafirxaneyeke leşkerî dikin. Herwiha hat zanîn ku leşkerên taybet ên hevpeymaniya navdewletî beşdarî Operasyona Minbicê jî dibin û şer koordine dikin.

Li aliyê din hat zanîn ku rêveberiya Xweser a Rojava amadekariya wê yekê dike ku Kantona Efrînê û Kobanê bigihîne hevdu. Herwiha hat zanîn ku bi navbeynkariya Rêveberiya Herêma Kurdistanê û DYA'yê Tirkiye jî li ser operasyonê hatiye qanîkirin.

Eşkere tê dîtin ku Yekîtiya Ewropa, (YE), Rûsya û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) li Sûriyê bi cih dibin. DYA, Rûsya û YE ji ser Iraq û Sûriyê li Rojhilata Navîn xwedî ajandeyeke nû ne. Hevbendiya van zilhêzan a bi hêzên li ser erdê jî bûye cihê meraqê û tê nîqaşkirin.

Li aliyê din helwest û stratejiya du hêzên mezin Îran - Tirkiyê yên li Rojhilata Navîn jî ber bi eşkerebûnê ve diçe. Amaje li ser wê yekê heye ku Tirkiyeya piştevaniya komên selefi dikir û bi dîplomasiya kon li meseleyan temaşe dikir wê di nava vê qadê de cih negre. Li aliyê din tê dîtin ku Îrana li Iraq û Sûriyê li dijî DAIŞ'ê komên şîe mezhep birêxistin kir û di şerê li dijî DAIŞ'ê de helwesta li aliyê Hevpeymaniya Navdewletî nîşan daye ji aliyê DYA, Rûsya û YE'yê jî tê piştevanîkirin.

Guman têde nîne ku aktorekî din ê di van 5 salên şerê li dijî DAIŞ'ê de serkeftinên mezin tomarkirine kurdên Rojavayê ne. Li Sûriyeya ku her roj hevsengiya şer û stratejî li ser wê digiherin de hêzên kurd ê li Rojava weke hêzeke serekî derdikevin pêş. Rêveberiya kurdan ku piştî 2012'an li Rojava bûye hêzeke leşkerî û siyasî û PYD pêşengiya wê dike di nava 5 salan de bû aktorekî girîng. Ji destpêka qeyrana Sûriyê ku 2011'an destpêkir, hêzên hevpeyman ku piraniya wan endamên NATO'yê ne û di destpêkê de nedixwastin YPG ku girêdayî PYD'ê ye bihêz bibe di şerê li dij DAIŞ'ê de destbi piştgirîkirina YPG'ê kirin. Hevpeymana navnetewî ku piştgiriya xwe ya ji bo Artêşa Azad, El Nûsra ku girêdayî El Kadîdê ye û Ehrar el Şamê ku ew jî baskê Îhwan El Muslîm yê Sûriyê ye birî û bû partnerê YPG'ê yê nû.

Ji hêla din ve êrişên komên selefî di serî de Kobanê û Serêkaniyê yên li dij herêmên kurdan û astengkirin û têkbirina van êrişan ji aliyê YPG'ê ve bû sedem ku YPG weke hêzeke leşkerî û PYD jî hêzeke siyasî derkeve pêş û hêzên Rojavayî bi rêveberiya kurd re pêwendiyên nû dênin û têkiliyên xwe xurt bikin. Her wih nirxandina nêzîkatiya rêveberiya siyasî û leşkerî ya li Rojava ku sekuler û piralî ye jî faktorekî girîng e ku dewletên Rojavayî nêzikî PYD'ê bibin, tê kirin.

Meclîsa Sûriya Demokratîk (MSD) û Hêzên Sûriya Demokratîk (HSD) ku bi pêşengiya kurdên Rojava di Cotmeha 2015'an de hatin avakirin ereb, tirkmen, çerkes, durzî, suryan û elewiyan digire nava xwe. Faktorekî din yê ku girîng tê dîtin ku hevpeymaniya navnetewî û HSD'ê nêzikî hev dike jî serkeftinên leşkerî yên HSD'ê li dij DAIŞ'ê û kontrolkirina navendên girîng yên DAIŞ'ê ji aliyê HSD'ê ve ne.

Geşedaneke din ya ku girîng tê dîtin jî ew e ku hêzên taybet yên hevpeymana navnetewî li Rojava bicih bûne û perwerdekirina HSD'ê li dij DAIŞ'ê ye. Adara îsal hatibû ragihandin ku leşkerên Amerîkayê yên ku li herêma Rimêlan ya Hesekê bicih bûne, li wê herêmê balafirgeheke leşkerî avakirine. Hat zanîn ku ji bilî DYA'yê Fransa û Almanyayê jî ji bo piştgirîkirina operasyona Menbicê ku serkêşiya wê HSD dike, hêzên taybet şandine Kobanê û Grêspî. Her çiqas Wezareta Karên Derve ya Almanyayê şandina hêzên taybet derewîne jî li gor zanyariyên ku BasNûçe'yê ji çavkaniyên Rojava bidest xistine, li Kobanê û Grêspî yekîneyên taybet yên DYA, Almanya, Brîtanya û Fransayê bicih bûne.

Rayedarên Rojava radigihînin ku hêzên taybet yên Almanyayê wê di operasyona Menbicê de danîna kordînatan bo hêzên esmanî, di têketina Menbicê de perwerdeya şerê nav kolanan, bombe û paqijkirina mayînan de şêwirmendî û piştgiriyê bidin.

Wezîrê Karên Derve yê Kobanê Îbrahîm Kurdo, nivîskarê Rojavayî ku li Almanyayê dijî Bekir Mistefa, Akademîsyen Hakan Güneş, Endamê ENKS'ê Elî Remî , Serokê Komela Mafên Mirovan ê Şaxa Kobanê Biradost Kemal, bicihbûna welatên endamên NATO'yê li Rojava ji BasNûçe'yê re nirxandin.

**Wezîrê Karên Derve yê Kobanê Îbrahîm Kurdo: Em sîstemeke federal ya demokratîk ava dikin**

"Armanca hebûna DYA, YE û Rûsyayê li Sûriyê bejewendiyên wan in. Piştgirîkirina HSD'ê ji bo berjewendiyên wan e. Bi hev re tevgeriyana PYD û YPG'ê bi wan re jî ji bo berjewendiyên wan e. DAIŞ ji bo kurdan, Ewropayiyan û DYA'yiyan metirsiye û em jî dixwazin DAIŞ têk biçe û ji Sûriyê were derxistin, vê yekê dewletên Rojavayê jî dixwazin. Fransa û Belçîkayê hovitiya DAIŞ'ê bi awayekî zelal tecrûbe kirin. Beriya çend rojan li bajarê Orlando yê Amerîkayê jî êriş çêbûn. Amerîka jî hovitiya rêxistinên tundrew yên îslamî dizane. Hevpeymaneke ku li dij DAIŞ'ê şer dike heye. Em parçeyekî girîng yê vê hevpeymanê ne.

Ji bo Rojava û Sûriyê projeyên me hene. Em ji bo sîstemeke demokratîk û federal têdikoşin. Ajandayeke me ya ku hemû Sûriyeyiyan digire nava xwe heye. Em sîstemeke ku azadî û mafên mirovan esas digire ava dikin. Pêkhatiyên olî û etnikî piştî 50 salan ji nûve xwe di nava sîstema nû de dîtin. Ev gelek girîng e. Sîstemeke federal û demokratîk tê damezrandin. Di navbera gelan de pêkvejiyan û diyalog derketiye pêş. Nexşeya Rojhilata Navîn ya siyasî û erdnigarî wê bigûhere. Em jî di nav vê guherînê de ne û em ê ji bo maf û berjewendiyên gelê xwe têkoşîna xwe bidomînin."

**Endamê ENKS'ê Elî Remî: Hêzên navnetewî divê daxwazên kurdan bibînin**

"Qeyrana Sûriyê wê dewam bike. Hatina hêzên navnetewî bo Sûriyê û çêkirina nexşeya rê bo çareserkirina qeyranê girîng e. Çareseriya siyasî bi sîstema federal pêkan e. Dibe ku hêzên navnetewî û YPG rêxistinên tundrex yên îslamî ji Sûriyê derbixînin, lê belê çareseriyeke siyasî şert e. Operasyonên leşkerî û derxistina komên selefî ji Sûriyê wê qeyrana Sûriyê çareser neke. Divê Rojava bigihije statuyeke federal û ji bo vê yekê daxwazên ENKS'ê jî ji saziyên navnetewî hene. Divê ew hêzên ku li dijî DAIŞ'ê şer dikin mafê diyarkirina çarenûsa xwe yê gelê kurd bibînin. Mayîna Beşar Esad li Rojava bo kurdan talûke ye. Beşar Esad bi salan dest danî ser xaka kurdan. Kurd ji mafên wan yên sereke bêpar hişt. PYD hebûna Esad dewam dike.

Divê rêveberiyeke weke ya Rêveberiya Herêma Kurdistanê li Rojava jî hebe. Gel tiştekê ji dirûşmên PYD'ê yên federasyona demokratîk û xweseriyê fêm nake. Tu mînakên sîstema federasyona demokratîk tune ne. Divê hêzên navnetewî di vî warî de daxwazên gelê kurd esas bigirin. Daxwazên PYD û alîgirên wê ne daxwazên hemû kurdên Sûriyê ne."

**Serokê Komela Mafên Mirovan ê Şaxa Kobanê Biradost Kemal: Divê PYD bigihije sîstemeke demokratîk**

"Karwanên leşkerî ji deriyê sînorî yê Sêmalka tên Girê Miştenûrê. Tê gotin ku Fransa wê li Girê Miştenûr balafirgehekê ava bike. Karwanên leşkerî yên DYA'yê jî ji Başûrê Kurdisanê ber bi Rojava ve tên. Niha li Rojava



hêzên taybet yên alman, ingilîz, fransî û DYA'yî hene. Ev hêzên taybet yekser operasyona Menbicê kordîne dikin û hinek jî di çeperên pêş de li dij DAIŞ'ê şer dikin. Ji bilî Kobanê li Eyn Îsayê jî hene. Hêzên taybet yên hemû dewletên ku di nav hevpeymana li dij DAIŞ'ê de cih digirin, tên Rojava û diçin.

Xebat û çalakiyên hevpeymana navnetewî yên Rojava hemû leşkerî ne. Hêj zelal nebûye ka wê li Rojava sîstemeke rêvebirinê ya çawa bê danîn. Opozîsyona li Rojava daxwaz ji hevpeymana navnetewî dike ku PYD bigihije sîstemeke demokratîk û dev ji polîtîkaya xwe ya zordest berde. Sîstema leşkerî û siyasî di destê PYD'ê de ye ku nêzikî PKK ye. Sîstema PYD'ê ya zordest û tundrew û pêkûtekirina opozîsyona kurd aciziyek mezin afirandiye. Qebûlkirina nirxên demokratîk yên welatên Rojava bêgûman wê bandorê li ser pergala leşkerî û siyasî ya li Rojava jî bike û wê pêkan be ku ENKS jî di nava rêveberiyê de xwedî gotin be."

**Rojnameger Bekîr Mistafa: Divê ENKS–PYD bi berpirsyarî tevbigerin**

"Hevpeymana navnetewî di destpêkê de piştgiriya esmanî da hêzên kurd. Paşê ev hêze daketin Kobanê û bajarên din. Hebûna van hêzan li Rojava girîng e. Wê kurdên Rojava li hemberî zilma Esad biparêzin. DIbe ku Rojava ji pêkanînên faşîst yên rejîma Sûriyê rizgar bibe. Dibe ku Rojava bigûhere û PYD ji hin pêkanînên xwe vegere. Destkeftiyên kurdan yê li Bakûrê Sûriyê her roj mezin dibin. Bi salane kurd têkoşîna rizgariyê didin. Ev têkoşîne sala 1990'an bi midaxeleya NATO'yê li Başûrê Kurdistanê bû xwedî sîstemeke federal. Ev sîstem bi dem re bû xwedî bingeha dewletê û ev prose dewam dike. Girîng e ku kurd li Rojava jî îradeyeke bi vî awayî nîşan bidin.

Xebatên DYA, Fransa, Rûsya û Almanyayê yên li Rojava di berjewendiya kurdan de ne. Dibe ku rêveberiya kurd di navbera bajarên kurdan de korîdorekê veke. Divê kurd ji Birakujiyê dûr bikevin û bi hev re tevbigerin. Eger li Başûrê Kurdistanê Birakujî çênebûya, wê proseya dewletbûnê zû temam bûya. Nakokî bandorê li ser pêşveçûnê dikin. Divê PYD jî û ENKS jî di vê mijarê de bi hesasî tevbigerin. Ez dibêjim ku hêzên Rojavayî di demek nêz de wê ENKS û PYD'ê li ser heman maseyê bicivînin."

**Akademîsyen Dr. Hakan Güneş: Li xeta Kobanê–Efrînê wê korîdorek were vekirin**

"Em dikarin piştgirîkirina Hêzên Sûriya Demokratîk ku niha li ser wê herêma ku Tirkiyê weke xeta sor bi nav dikir de pêşve diçin, ji aliyê dewletên endamê NATO'yê ve û bicihbûna wan dewletan li Rojava bi çend awayan şîrove bikin. Dewletên Rojavayî krêdiya Tirkiyê ji ber piştgiriya wê ya bo komên tûndrew yên îslamî daxistin. Dewletên Rojavayî piştgiriyê didin PYD a ku nirxên demokratîk yên Rojavayiyan li xwe digire û xwedî sîstemeke sekuler e. Hêzên Rojavayî ji bo ku Tirkiyê neyînin hemberî xwe bi awayekî veşartî piştgirî dan PYD û Hêzên Sûriya Demokratîk. Divê mirov pîvana vê piştgiriyê zêde mezin neke. Nunertiya PYD'ê ya ewil li Moskovayê û paşê jî li Prag û Parîsê vebû. Hêj dewletên Rojavayî PYD di hevdîtinên Cenevrê de weke aktorekî meşrû qebûl nekirine. Hêj zû ye ku em bibêjin welatên Rojavayî rûyê xwe bi temamî ji Tirkiyê dane alî. Lêbelê pêkane ku em bibêjin ev yek ber bi PYD'ê ve diçe. Tirkiyê jî ev dît û niha hewl dide ji wê polîtîkaya xwe ya şaş vegere. Hikûmeta Binali Yıldırım ragihand ku ew ê ji polîtîkaya derve ya şaş vegerin.

Ez bawer nakim ku DYA û YPG bi operasyona Menbicê kantonên Efrîn û Kobanê bi hev ve girêbidin. Piştgiriyeke berbiçav ji bo îdareya kantonan heye. Tirkiyê jî ev dît û qebûl kir. Li vir aktorê sereke Amerîka ye. Amerîka û Rêveberiya Herêma Kurdistanê aktorên sereke ne ku di navbera HSD û Tirkiyê de diyalogê pêk tînin. Li ser xeta Minbîc–Marê hewlên avakirina korîdorekî hatin û çûyînê tên dayîn. DYA'yê hêj kontrol nedaye destê PYD'ê. Kontrola çûnûhatinê û kontrola qadê ji hev cûda ne, xuya dike ku Tirkiyê jî ev yek qebûl kir."

**Endamê HSD'ê Hûmûdî: Em ketin Menbicê**

"Operasyona Menbicê ket hefteya sêyem. Operasyona ku 1'ê Hezîranê destpêkiribû dewam dike. Li gor zanyariyên ku ji herêmê tên, HSD'ê ku pêşengiya wê YPG dike ket Menbicê. Endamê Meclîsa Leşkerî ya Menbicê Ravî Hûmûdî ji BasNûçe'yê re axivî û eşkere kir ku qonaxa yekem ya operasyonê temam bûye û HSD ketiye navenda bajêr. Hûmûdî ragihand ku li bajar sivîl dijîn û ji bo ku sivîl zirarê nebînin HSD giran pêşve diçe. Hûmûdî diyar kir ku di demek nêz de wê Menbîc were rizgarkirin û ew ê mizgîniyê bidin xelkê Menbicê. Endamê Meclîsa Leşkerî yê Menbicê destnîşan kir ku hêzên hevpeyman baragehên leşkerî yên DAIŞ'ê li nava bajêr bombebaran dikin û got, "DAIŞ tengav bûye. Li Reqqayê jî operasyona ku Rejîmê da destpêkirin dewam dike. Xelkê sivîl piştgiriyê nade DAIŞ'ê. Operasyoneke mezin bû û qonaxa yekem bi dawî bû. Êdî ma ku em terorîstên DAIŞ'ê yên li nava bajêr bigirin. Em ê wan jî bigirin û mayîn û bombeyên ku DAIŞ'ê çandine paqij bikin."



## Hebûna hêzên NATO li Rojava

Necîb Balayî

Hebûna Hêzên NATO yên taybet, yên Amerîka û Fransa li Rojavayê Kurdistanê girîngiyek mezin heye û bingeha xwe ji duriyana tektîk û stratejîyê digire û li ser wê dûriyanê dimeşe.
Pir kes wiha difikirin ku hebûna van hêzan li Rojava pirsek demkî ye ew ê di demek zû de bi dawî bibe, lê bi bawerîya min, hebûna van hêzan bi taybet yên Amerîka û Fransa li dû bingehên leşkerî li bakurê Sûriyê (Rojava) ku nûnertîya hemû hêzên NATO û yên welatên Rojava û Cîhana Xirstîyanan dikin, wateyek xwe ya siyasî û stratejî heye.
Amerîka û Rojava gelek li benda cîhana îslamî man (Tirkiye, Erebistana Siûdî, Qatar û hemû welatên Kendavê) ku li hember terora DAIŞ'ê pêngavekê biavêjin, lê ev li bendê mayîne di berjewendiya kurdan de hem li Rojava û hem li Bakûr vegeriya.
Li Rojava ji derveyî berxwedana bê hempa ya kurdan li hember rêxistina DAIŞ'ê hin kirîterên tevgera kurdî li Rojava û welatên Rojavayî di xalekê de gihane hev û em dikarin bêjin armancên hevpar in, weke rolê jinê, qanûna medenî ya civakî, pirsa sekûlerîzm, rêzgirtin û hembêzkirina netewên din yên olî û etnîkî li herêmê, avakirina leşkerek hevbeş ji kêmaniyên herêmê yên weke tirkmen, ereb, çerkez...hwd, û ciddiyeta şerê li dij DAIŞ'ê, ev xal hemû sedem in ku Amerîka û alema Rojava, kurdan weke hevpeyman bibînin û bipejirînin.
Bi dîtina min hatina hêzên Rojavayî bo bakurê Sûriyê (Rojava) ne tenê di çarçeva şerê li dij DAIŞê ye, ew ê kurdan êdî senga xwe ya siyasî, leşkerî û civakî hebe.
Hêzên NATO wiha bi asanî biryara hatina Rojava nedan, ew piştî lêkolîn û raportên pisporên xwe hatine wê herêmê, berîya nêzîk 2 salan li bajarê Prag ez bi du şervanên biyanî re axivîm, yek brîtanî û yê din amerîkî bû, van herdû kesan ji bo demek dirêj li Kobanê û Cizîrê di nava YPG'ê de ma bûn, ji axaftinên wan xweya dikir ku tevgera YPG li gor dilê wan bû. Ew ji wê tevgerê razîbûn, bi tenê yekî ji wan yek rexne hebû ew jî digot 'tevgera wan tevgerek çepe. Lê ev jî ne pir girîng e.' weke wî kesê Amerîka digot, herwiha wan mînakek gendeliyê anî ziman û got; 'kesê di nava wan de gendeliyê bike tê avêtin û siza dan.'
Kurdan bi giştî û kurdên Rojava bi taybetî şansekê wan hebû ku Recep Tayyip Erdoğan bi vê eqliyeta xwe li ser desthilatê bû li Tirkiyê. Ji ber ku AKP di hemû hewildanên xwe de destvala vedigere, niha Tirkiye wek endamê NATO'yê di pirsa şerê li dij DAIŞ'ê de, hatiye mandilakirin, têkiliyên wê hema hema bi hemû welatên Rojavayî re di xerab in, ev lawiziya têkiliyan dîsan sedemeke ku NATO weke berê her tişt, her daxwaz û şertekî Tirkiyê ne pejirîne.
Xala herî girîng di siyasta PYD'ê bi baskên xwe yên siyasî û leşkerî ve ew e, heta niha karıye belansek baş di navbera NATO û Rûsyayê de ragire, ji xwe PYD sala 2011a'n di hemû daxwiyaniyên xwe de, dabû eşkerekirin ku ew, di pirsgirêkên Sûriyê de seta sêyan in, ne bi rejimê re ne, ne bi opzisyona ku leşkerê Sûriyê Azad re ne, wan xwendinek xwe ya taybet di Şoreşa Sûriyê de heye. Heta radekî ew xwendin realîte û rast derket, êdî ne DAIŞ ewqas zû bidawî dibe, ne rejîma Esad dikeve û rewşa Sûriyê stabîl dibe. Li gor van mercan hêzên Amerîka û Fransa yên hatine wê herêmê ji bo demek dirêj dimînin, piştî qonaxa şer li Sûriya qonaxa siyasî û stabîlekirina wî welatî jî dê gelek dirêj bibe.



### Helwesta Goran nagore!

# Aloziya siyasî kurtir dibe

**Kemal Azad**

Li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) vê heftê têkiliyên navbera partiyên siyasî mora xwe li rojevê da. Di hevdîtinan de ji bilî mijarên referandûma serxwebûnê û pêşeroja Kerkûkê, nakokî û lêgerînên danûstandinan yên di navbera partiyan de cihê xwe yê di rojevê de girtin. Biryara girtina Serokê Goranê Newşîrvan Mistafa jî bû sedeam krîzeke nû. Medya ya Goran, piştî biryara dadgehê li dijî Serokê Heremê Mesûd Barzanî dest bi kamyanya ya reşkirinê kir. Barzanî derbarê kampamya Goranê de got; "Bersîva Goranê piştgiriya bo serxwebûn û Peşmerge ye."

Piştî ku di navbera YNK û Tevgera Goran de peymana hevkariyê hat îmzekirin û bû sedemê qeyraneke nû, YNK hewldide li gel PDK'ê têkiliyên xwe biparêze û gumanên derbarê vê hevkariyê de zelal bike. Yekîtiya Niştimaniya Kurdistanê (YNK) û Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) li Hewlêrê civiyan û hat ragihandin ku PDK ji bendên ku ji avakirina koalîsyon û komeke hevbeş, çalakkirina parlamentoyê bê merc, hilbijartinên Sero-katiya RHK'ê û zêdekirina karbidestiyên Serokwezîr pêk tên, aciz e.

Rayedarên YNK'ê dibêjin ku rêkeftina wan a bi Goranê re dê zirarê nede Rêkeftina Stratejîk a bi PDK'ê re. Rayedarên YNK'yî ku di mijara referandûma serxwebûnê de eşkere piştgiriyê didin PDK'ê, tînin ziman ku ji bo pêkanîna referandûmê di demekî nêz de, divê arîşeyên di navbera Goran û PDK'ê de werin çareserkirin û diyaloga di navbera partiyên siyasî bidome.

Ji hêla din ve tê PDK'ê jî ku di nava hefteyê de di bin serpereştiya Serokê RHK'ê û Serokê Giştî yê partiyê Mesûd Barzanî de kom bûbû,mijarên referandûma serxwebûnê, têkoşîna li dij gendeliyê û çaksaziyên aborîyê anîne rojeva xwe û tê çaverêkirin ku di demek nêz de, derbarê referandûmê de nexşerê were ragihandin.

**'Dubendiya herêmî nabe"**

Konseya Hevbeş a ku piştî rêkeftina di navbera YNK û Goranê de ji bo cîbicîkirina bendên rêkeftinê hatibû avakirin, di civîna xwe ya dawîn de biryara girtina avakirina komîsyonekê ji bo cîbicîkirina bendên ku rêkeftin li ser pêk hatibû, da.

Di daxuyaniya ku piştî civînê ji aliyê Konseya Hevbeş ya YNK û Goranê hat dayîn de, hat gotin ku ji bo çareseriya qeyrana siyasî ya li RHK'ê û baştirkirina şert û mercên jiyanê yên gel, divê diyaloga di navbera partiyên siyasî de were pêşdebirin. Herwiha hat eşkerekirin ku xelkê Kurdistanê destûrê nade dûbendiya herêmî.

Di daxuyaniya Konseya Hevbeş ya YNK û Goranê de li ser referandûma serxwebûna Herêma Kurdistanê jî nirxandina, "Serxwebûn wek her miletî, mafê kurdan e jî" hat kirin. Konseya Hevbeş li dijî daxuyaniyên Parêzgerê Kerkûkê ku gotibû, 'Divê Kerkûk bibe herêmeke ser-bixwe' derket û ragihand ku Kerkûk wê weke parçeyekî Kurdistanê bimîne.

**Sadî Ahmed Pîrê (YNK): Hemû partiyên siyasî serxwebûnê dixwazin**

Endamê Polîtburoya YNK'ê Sadî Ahmed Pîrê di derheqê civîna di navbera YNK û Goran de ji BasNûçe'yê re axivî. Sadî Ahmed Pîrê got ji bona Serxwebûna Kurdîstanê referandum girîng e û ew piştevaniya referandûmê dikin. Pîrê wiha berdewamkir: "Çawa ku her gelek mafê wî heyî çarenûsa xwe diyarbike. Mafê kurdan jî heyî ku çarenûsaxwe diyarbike û serbixwe biji. Û êdî ew dem hatiye. Kê gotiye di pirtûkên pîroz de dibêje mafê kurdan yê serxwebûnê nine? Tiştên herî girîng yekîtiya kurda ye. Gel yekîtiyê dixwaze. Hemû rêxistin di fikra referandûma serxwebûnê de hevbîr in. Wekî YNK, PDK, Tevgera Goran, Yekgûrtiya Îslamî, Komelên Îslamî, Komunîst û rêxistinên tirkmenan ev rêxistin di heman demê de dixwazin pirsgirêkên navxweyi yên siyasî û aborî çareser bibin."

**"Dibe ku Tirkiye û Îran li dij serxwebênê derkevin"**

Endamê Polîtburoya YNK'ê Sadî Ahmed Pîrê balkişand ser karekterê dewletên desthilatdar li Kurdistanê û wiha berdewam kir: "Pêwîst e nêrînên devletên cîran esas neyên girtin. Devletên weki Tirkiye û Îran mimkune li hember Serbixwbûna Kurdistanê derkevin. Ew nûnerê gelê xwene. Li gor berjewendiyên xwe tevdigerin. Mixabin ji bo van devleta li hember desketiyên Kurdîstanê derketin bûye çandek. Ew100 sal in, ji Peymana Sykes-Picot vir de li hember kur-dayetiyê derdikevin. Girîngî ew e ku kurd bixwe îradeya serxwebûnê bidin nîşandan. Eger kurd bibin xwedî îrade û yekitiya xwe çêbikin tu hêz nikare kurdan têk bibe. Ji dema avakiri-na RHK ji gelek devlet li hember deriketin. Le mecbûr man tehamûl bikin."

Ahmed Pîrê destnişankir ku serxwebûn bi yekitiya netewî ve girêdayî ye û wiha berdewam kir: "Kurdistana ku pirsgirêkên navxweyî yê siyasî, aborî û civakî çareserkiriye, dibe Kurdi-stanek bi hêz û bi rêz. Pewîst e di navbera hemû parçeyan de yekitiyek were avakirin. He-vbeşkirin girîng e. Pêwîst e RHK bi Partiya Yekitiya Demokratîk (PYD) peyweniyên baş pêşxîne. Dîsa bi gel û rêxistinên Rojhilat re herwiha li gel Bakurê Kurdistanê peywendî gelek girîng in. Peywendiya li gel PKK, HDP û rexistinên din pewîst e bi hêz bin."

**Nivîskar Behrûz Cafer: Divê referandûm neyê paşxistin**

Nivîskar Behrûz Cafer hişyarkir ku referandûma serxwebûnê neyê bi dûwaxistinê. Lê mixabin em nikarin behsa yekitiyek di navbera rêxistinên siyasi bikin. Cafer geşedanên siyasî bi bîrxist û wiha berdewam kir: "Serxwebûn û hizbayetî tîştên cûda ye. Gelê kurd ev 4 meh in di nava aloziya siyasî, aborî û civakî de berbi fetisandinê ve diçe. Berdevkê Hikumeta Kurdistanê Sefîn Dîzayî dibêje 'eger hikûmeta Iraqê mehê yek mîlyon dolar misoger bike. Em amade ne ji bo firotina neftê rêkeftina imze bikin' ev nêzîkatî dibe sebep ku referandum disa taloq bibe, dereng bikeve. Serxwebûna Kurdîstanê bîr û bawerî û xeyalê hemû kurda ye. Em ji bo vê yekê têdikoşin."

**'Divê ji bo Kerkûkê berpirsyarî were girtin'**

Cafer balkişand li ser xetera serxwebûna Kerkukê û got eger şaşîtiyek wiha were kirin tu kes nikarê wê telafîbike. Cafer wiha got: "Kerkûk bi awayekî fîli di destê kurdan de ye. Eger bibe serbixwe, êdî hevsengiyên siyasî wê têkevin dewrê. Eger xweser bibe dê serokê herêmê kurd be. Serokê parlementoyê ereb, serokwezir jî wê tirkmen be. Ev tê çi wateyê? Yanî Iraqek biçûk ya disa bi pirsgirêk. Sibê yan du sibê eger ew grûbên etnikî, ereb, tirkmen û wekidin li hember kurdan rêkeftinekî bi pêşxînin kes dikare behsa kurdayetiyê bike. Ma hingê tiştek dimîne li holê? Dosyeyên tawanên Tirkiye, Îran û Iraqê li hember kurdan gelek dagirtiye. Di dîroka nêz de komelkûji pêk anîne. Ji ber wê yekê pêwîst e rêxistinên kurdan hasas bin li hember netewîtiyê. Li hember hevdû bir rêz û bawerî tevbigerin eger nebi êdi ev firsendên dirokî kes nikare şûnde vegerîne."



**Di derheqê Newşîrwan Mistafa de biryara girtinê**

Di hefta borî de ji ber ku Serkirdeyê Tevgera Goran Newşîrvan Mistefa neçû îfadedayînê der-barê wî de ji aliyê Dadgeha Hewlêrê ve biryara girtinê hat derxistin.

Sekereterê Goran Newşîrvan Mistefa bi tehdîdkirina kompanya û konsolxaneyên biyanî yê li RHK'ê û fermandana revandina endazyarên biyanî tê sûcdarkirin. Dengê Newşîrvan Mistefa ku ev tehdîdan dike di medyayê de belavbûbû. Piştî mijar gihîşt dadgehê jê hat xwestin ku derbarê angaştan de îfade bide. Lê belê Mistefa û Tevgera Goran vexwendina dadgeha Hewlêrê redkirin û Serkirdê Goranê îfade neda. Dadgeha Hewlêrê jî ji ber ku îfade nade, ji bo bi zorê îfade girtina Newşîrwan Mistefa derheqê wî de biryara girtinê stand.

Serokê dadgehê Hakim Samih Osman, diyarkir ku ruxmî vexwendina wan Newşîrwan Mistefa nehatiye îfade dayînê û got: "Ew iddîa hîn di bin lêpirsînê de ne. Eger kesê di bin gumanan de neyê dadgehê şaşîtî yan rastiya îddîayan zelal nabe û eger li dadgehê amade nebe, dê dadgeh biryara xwe bide."

Berdevkê Goran Şoreş Hacî jî îddia kir ku ew biryara di derheqê Newşîrwan Mistefa de ji aliyê dadgeha Hewlêr û asayîşê ve hatiye derxistin. Û got ew wekî Goran wê biryara li derveyî qanûnê dibînin û qebûlnakin û dosyayê ji red dikin.

**PDK'ê bersîveke tûnd da Goranê**

Piştî biryara girtina Newşîrvan Mistefa, medya û rayedarên Goranê, tohmetbariya PDK'ê kirin ku ev biryar ji aliyê wan ve hatiye girtin. Li ser vê yekê PDK bi daxuyaniyekî fermi bersîva Goranê da û ji bo Sekreterê Goranê got 'bi tehdîd û hewldanên tevliheviyê yekitiya netewî ya Kurdistanê têknaçe.'

Di daxuyaniya tund ya politborûya PDK'ê de wiha hat gotin: "Bi tawanên bê esl û bi sexte-kariyê, yekitiya netewî ya Kurdîstanê têk naçe. Bi tehdîd û bi derxistina aloziyan nizama Kur-distana navxweyî nayê guherandin."

### Mesûd Barzanî:

# Bersîva Goranê piştgiriya serxwebûnê ye



Biryara darezandin û girtina Newşîrvan Mistefa bû sedem ku medya ya Goranê tevî PDK'ê, Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî jî bike hedef. Di rojên dawîn de di medya ya Goran de derbarê Barzanî de kampanyayeke reşkirinê hat destpêkirin û hat îddîakirin û di biryara dadgehê de tesîra Barzanî heye.

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî li ser vê yekê derbarê kampanya ya reşkirin û îddiayên ku medya ya Tevgera Goran piştî biryara dadgehê derbarê wî de belav dike bersiv da.

Serokatiya Herêmê derbarê mijarê de peyamek ji raya giştî re belav kir û têde daxwazê ji hemû aliyan kir ku kes ji dêvla wî bersiva Goranê nede. Di daxwuyaniyê de hat gotin ku divê bersîva Goranê bi rêya piştevaniya serxwebûn û Pêşmergeyên Kurdistanê bê dayîn.

Peyama Barzanî wiha ye: "Di derbarê wê helmeta ragihandin û teşhîrên ji aliyê Tevgera Goran û kesên nêzîkî wan li ser şexsê min birêvediçe, daxwaz ji xelkê serbilind ê Kurdistanê dikim ku kes li ser min bersîva vê helmetê û axaftinên wan nede û kes xwe ji bo wê asta nizim danebezîne. Daxwazê ji we dikim palpişt û bergirîkarê serbixweyî û Pêşmergeyên me yên qehreman bin. Bergirîkarê heq û dadperweriyê bin û li beranber gendelî û kultûra dijûn û cinêwdanê rawestin û parêzerê çand û bihayên bilind ên gelê me bin. Di vê rewşê de pêwîst e ewlewiyeta serekî ya me hemû aliyek serbixweyî û piştevanîkirina Pêşmerge ya ji bo têkşikandina terorîstên DAIŞ'ê û baştirkirina jiyana xelk û rûbirûbûna gendeliyê be. Bi dilni-yayiyê ve ew ên yekrêziya gel têk didin û hewla têkdana aramî û asayîşa Kurdistanê didin û musîbet li ser vî gelî tînin dê bigihin sizayên xwe yên yasayî."

**Eli Ewnî (PDK): Newşîrwan helwestên Saddam nîşan dide**

Endamê Polîtburoya PDK'ê Elî Ewnî idia kir ku ew biryarên qebûlnake. Bi nehatina Newşîr-van Mistefa ji bona dadgehê. Elî Ewnî ji BasNûçe'yê re axivî û got: "Daxuyaniyê Newşîrwan helwesta Saddam Hisên a dadgehê anî bîra min. Saddam bi deh hezaran mirovên sivîl qetilkir. Di dadgehê de behsa emperyalîzmê, yekîtiya Iraqê û mafên mirovan dikir. Hakim Rauf Abdülrahman ji wî re got 'Te qetla însanan kiriye. Dev ji emperyalîzmê berde rastiya bêje.' Niha jî Newşîrwan Mistafa heman tiştî dike. Ji ber tehdidkirina kuştina mirovan tê darizandin. Li Silemaniyê ji gel re behsa edebiyata emperyalizmê dike. Dengê wî yê tomarkirî heye. Eger netirse were dadgehê, ew denga dê di labaratuaran de were zelalkirin gorî we encamê dê dadgeh biryarê bide."

Di daxuyaniya xwe de Elî Ewnî got ku Newşîrwan Mistafa ji hewldanê tekoşîna li dijî gendeliyê ditirse û hewl dide ku operasyonên li diji gendeliyê negihên Silemaniyê. Ewnî axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Li Hewlêrê gelek diz hatin girtin. Li Silemaniyê ji dê ev operasyon pêşkeve. Newşîrwan Mistefa ji vê ditirse. Ji ber ku serkêşiyê ji gendeliyê re dike."

**DYA: Em ê piştgiriya xwe ya ji bo Pêşmerge berdewam bikin**

Din nav vê heftê de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li Selahedînê pêşwaziya şandeya nûnerê Koalîsyana Navnetewî Sean MacFarland û Balyozê Amerika yê li Iraqê Stuart Jones kir. Ew hevdîtina ku di asta jor de nûnerên leşkerî û dîplomasî di navde bûn balkişandin ser hevkariya li nav xwe û hat gotin dê Amerika piştgiriya xwe ji bona Peşmergeyan berdewam bike.

**Rûsya: Wê piştgiriya me ya ji bo Kurdistanê berdewam bike**

Ji aliyên din ve Serokwezîrê Hikumeta RHK'ê Neçîrvan Barzanî ku ji bona beşdarbûna 20. Foruma Aborî ya Navnetewî çû St. Petersburga Rûsya yê, bi Wezirê Karên Derve yê Rusyayê Sergey Lavrov re hevdîtinek pêk anî. Di hevdîtina navbera Serokwezîr Barzanî û Wezirê Der-ve yê Lavrov de bal hatkişandin li ser peywendîyên dostane yê navbera Rûsya û Kurdistanê de û hat diyarkirin ku bi hebûna Konsolxaneya Rûsya yê li Kurdistanê, hebuna kompanyayê petrolê û tekoşîna li hember DAİŞ'ê ispata peywendîyên baş e.

Sergey Lavrov, da xuyakirin ku wê di çarçoveya tekoşina li hember DAİŞ'ê de ewê piştgiriya xwe ji bona Reveberiya Herêma Kurdistanê berdewam bike.

Serokwezîr Barzanî ji spasiya xwe ji bona Rûsya da diyarkirin ku di tekoşîna li hember şerê DAİŞ'ê de Rûsya imkanên ku daye Herêma Kurdistanê. Û hêviya berdewamiya alîkariyê kir. Neçirvan Barzanî, got: "Ji ber ku alîkariya Rûsya em spasiya tînin ziman. Em hêvidarin dê alîkarî berdewam be. Peywendiyê me yê dostane dê di warê siyasî, aborî û çandî de wê bi hêztir berdewam bikin."

Di hevdîtinê de rewşa awarte ya li Herêma Kurdistanê û pêşketinên siyasî yên vê dawiyê hatin rojevê.



## Mesrûr Barzanî: Divê Iraq bibe 3 parçe

Rawêjkarê Encûmena Asayîşa Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî jî di derbarê geşedanên Iraq û Herema Kurdistanê û şerê li dijî DAİŞ'ê de daxuyaniyek da Reutersê. Barzanî di daxuyaniya xwe de got ku piştî DAIŞ'ê ji bo ku pevçûnên li herêmê bi dawî bibin, divê Iraq di navbera kurd, sûnne û şîeyan de were parvekirin. Mesrûr Barzanî ragihand ku Iraqa Federal êdî bi kêr nayê, divê li Iraqê di navbera kurd, şie û sûnneyan de pergaleke parvekirî were avakirin.

Barzanî diyar kir ku êdî tu rastiya dewleta Iraqê nemaye û sistemeke ku her parçe xwedî pay-text û hikûmeta xwe ye were avakirin rasttir e. Rawêjkarê Encûmena Asayîşa Herêma Kur-distanê ragihand ku êdî tu baweriya gelên Iraqê bi jiyaneke hevpar û di bin banekê de nemaye û got, "Lê dibe em bibin cîranên baş û bi vî awayî em dikarin hin projeyan bi hev re birêve bibin."

Barzanî eşkere kir ku sedema derketina DAIŞ'ê li Iraqê li ber çavnegirtina erebên sunne ji aliyê erebên şîe ve bû û wiha axivî: "Ji ber vê yekê DAIŞ'ê herêmên sunneyan bi hêsanî bidest xist."

Mesrûr Barzanî derbarê amedakariyên operasyona rizgarkirina Mûsilê jî diyar kir ku beriya rizgarkirina bajar, divê mijara birêvebirina piştî DAIŞ'ê zelal bibe û wiha domand: "Piştî ku Mûsil hat rizgarkirin, di warê îdarekirinê de valahiyek çêbibe, ew ê bibe karesat."



# Li Rojhilat şer destpê kir

**Rêzan Karwan**

Tevgera siyasî û leşkerî ku di van salên dawîn de li her çar parçeyê Kurdistanê geş bûne, maf û daxwazên rewa yên kurdan anî rojeva cîhanê. Li Herema Kurdistanê ku 25 sal in ji bin desthildatdariya rejima Baas rizgar bûye niha jî proseya referandûma serxwebûnê destpêkiriye. Li Rojava bi destpêkirina şer û aloziyan kontrola bajarên kurdan hat bidestxistin û niha li jêr desthilata kurdan de bi pergala kanton-federasyonê tê birêvebirin. Li Bakûr piştî şerên dirêj ku 'proseya aştiyê' destpêkir û mafê kurdan hat rojevê, herçend bi pevçûnên mehên dawîn qut bû jî çav li rê ye ku careke din zindî bibe. Bêdengiya Rojhilat jî êdî bi dawî hat û piştî 25 salan deng bi çekan ket.

Partiya Demokrata Kurdistanê-Îranê (PDK-İ) di Newroza îsal de biryara vegera welat da di nava gel de dest bi xebatên leşkerî, siyasî û rêxistinî kir. PDK-İ'yê her çiqas biryara vegerê dabe jî destnîşankiribû ku ewê xwe li dijî êrişên rejimê biparêzin.

Serokê PDK-Î Evdirehman Qasimlo di sala 1988'an de li Wiyana û Sadik Şerefkendî jî di sala 1992'an de li Berlînê ji aliyê rejima İranê ve hatibûn kuştin. PDK-Î'yê di sala 1993'an de ji bo ku Herêma Kurdistanê nekeve jêr tehdîda Îranê, dev ji şerê çekdarî berdabû û hêzên xwe vekişandibû Başûr.

Piştî vegera Pêşmergeyên PDK-İ êrişa pasdarên Îranê jî destpêkir û di encam de şer û pevçûnên dijwar di navbera hêzên Pêşmerge û leşkerên Îranê de derket. Di pevçûnan de 21 leşkerên rejîmê li Şîno û li Pîranşarê hatin kuştin û bi dehan leşker jî birîndar bûn. Li gor agahiyan di şer de 6 Pêşmergeyan jî jiyana xwe ji dest dan û çendek jî birîndar bûn.

Çapemeniya Pasevanên Şoreşa Îslamî ya Îranê piştî şer iddîa kir "ji terorîstan 12 kes hatine kuştin û hinek belgeyên girîng" bi dest xistine.

Li gor daxwuyaniya PDK-Î'yê pasevanên Îranê li gundên bajarê Şîno; Qereseqel, Sergîz û Hesen Nûranê dora Pêşmergeyên lê di nava gel de xebata siyasî dikirin pêçane û ev yek jî bû sedema derketina şer.

**Bajarê Şino nêzîkî xwedî şêniyeke 60 hezar kesî ye û li başûrê bajarê Urmiye ye.**

Di derbarê şer û pevçûn û geşedanên dawîn de Endamê Komîteya Navendî yê PDK-Î Dara Natîq û ji rayedarên PDK-Î'yê Eqbal Şadî ji BasNûçe'yê re axivîn û ragihandin ku Hêzên Pêşmerge tenê mafê xweparastinê bikar anîne û ew ê xwe û xelkê xwe li hemberî her cûre êrişên rejimê biparêzin.

**PDK-Î: Çalakî û karên me wê berdewam bin**

Di derbarê şer de PDK-Î'yê jî daxuyaniyek belav kir û di daxuyaniyê de wiha hat gotin: "Pêşmergeyên PDK-Î jibo pêkanîna çend erkên siyasî û teşkîlatên xwe li navçeya Şino bûn, ji bo pişûdanê rû li gundê Qereseqel û ketin bin dorpêça hêzên rêjîmê, neçarbûn bergiriyê li xwe bikin û di encamê de şer û pevçûnek giran derket. Di pevçûnên ku 10 saetan ajot de, Pêşmergeyên qehreman şehîdbûn û bi dehan caş û pasdarên rêjîmê jî hatin kuştin û birîndarkirin, hêzên rêjîmê bi hovane mal û milkê xelkê gundê Qereseqel werankirin û ziyanekî mezin gihandin gund. Em radighînin ku tevî şehîdbûna çend Pêşmergeyên hizba me, wê li ser çalakî û karên xwe berdewam bibin. Serkirdayetiya PDK-Î ji bo piştevanî û alîkariya wan bo Pêşmerge spasya xwe arasteyî xelkê Şino û gundewarên Şino dike."

**Dara Natîq: Rejîmê derbeyekî mezin xwar**

Endamê Komîteya Navendî yê PDK-Î Dara Natîq ji BasNûçe'yê re ragihand ku tîmeke Pêşmerge bi mebesta karûbarên rêxistinî û serdana welatiyan berê xwe dabûn bajarê Şînoyê. Li gor Natîq li devrûbera gundê Qereseqelê rejîmê êrişê koma Pêşmergeyan kiriye û di encama pevçûnan de derbekî bi bandor li hêzên rejîmê dane û bi dehan caş û pasdar hatine kuştin. Natîq diyar kir ku di wî şerî de çend hevalên wan jî jiyana xwe ji dest dane û hinek jî birîndar bûne.

**'Pêşmerge mafê xwe parastinê bikar anî'**

Natîq axaftina xwe wiha domand: "Niyet û armanca Pêşmergeyan ne êriş bû. Pêşmerge li her cihekî bi mebesta kar û barên rêxistinî û siyasî serdana xelkê xwe kirine. Lê dema rejîmê êriş kir, wan jî mafê xwe parastinê bikar anîne. Û wê bersiva her êrişeke ku ji aliyê rejîmê ve tê ser wan. Heta niha hejmara şehîdên me ne diyar e. Em ê di demek nêzde agahiyên zelaltir û nav û nasnameyên şehîdên xwe eşkere bikin."

**'Gundê Qereseqel hat herifandin'**

Endamê Komîteya Navendî yê PDK-Î'yê di dirêjiya axaftina xwe de diyar kir ku rejîma Îranê gundê Qereseqel yê devera Şinoyê bi temamî herifandiye û daye ber top û muşekan û ragihand: "Heta xelkê sivîl jî hatye kuştin ku xelkê çav tirsandî bike. Bi temamî devera Ûrmiye bi giştî û bajarê Şînoyê her der milîtarîze kiriye û rewşeke xerab li wir çêkiriye ku wehşetekê din av xelkê de çêkiriye. Armanc û hedefên rejîmê tepeserkirin, girtin û îşkecekirina xelkê ye her wek berê bidomîne ew siyaseta ku rejîmê şopandî."

**'Rejîmê bawerî bi daxwazên rewa nîn e'**

Dara Natîq destnîşan kir ku mantiqa rejîma Komara Îslamî ne mantiqa diyalog an jî qebûlkirina çareserkirina arîşeyan bi rêyên siyasî, aştîyane û diyalogê ye. Natîq wiha domand: "Esasen rejîmê bawerî bi mafên netewî û daxwazên heq nîn e. Dema rejîmek bi agir, hêsin, îşkence û darvekirinê bersiva daxwazên gel da wê de mantiqê rejîmê mantiqê şer, girtin û tepeserkirinê ye. Bi dehan xortên me tên girtin, îşkencekirin û darvekirin. Dema hişmendî ev be wê çawa behsa diyalogê bê kirin. Ji xwe rejîmê bawerî bi rêbazên diyalogê tune ye û bi rêbazên siyasî rejîm mafên netewan radest nake."

**'Em ne êrişkar in'**

Endamê Komîteya Navendî Natîq got ku tevî hemû astengiyan jî xebatên tevgera rizgarîxwaz tiştek cuda ji mafên xwe naxwaze û êrişî tu kes û deran nekiriye diyar kir: "Em hizbeke êrişkar nîn in. Me êrişî erdê tu kesê nekiriye. Em daxwaza mafên xwe dikin. Mixabin ew vîn bi rejîmê re nîn e ku bi rêyên aştiyane vê arîşeyê çareser bike. Me mezintîrin qûrbanî di riya diyalogê ligel rejîmê de da û di esasan rejîm diyalogê bi plan pêk tîne. Dema Qasimlo jî bi van lîstikan bi awayekî ne mirovane rejîma Îranê, Qasimlo û hevalên wî li ser maseya muzakereyê şehîdkir. Dema rejîmê behsa diyalogê kir hedefa wê zêdetir birêvebirina planekê ku armancên xwe pêk bîne. Ev xebata ku hatiye destpêkirin wê bidome. Me fikra wê jî hindê kiriye ku qûrbanî jî û şehîd jî hebin. Lê xebata me wê her berdewam be û em xebata xwe ranawestînin."

**Eqbal Şadî: Pêşmerge derbekî giran li rejîmê da**

Endamê Partiya Demokrata Kurdistanê – Îran (PDK-Î) Eqbal Şadî ji BasNûçe'yê re ragihand ku Pêşmergeyên wan di dema gerekî siyasî û civakî de rastî kemîna pasdarên Îranê hatine û di encama wê yekê de şer derketiye û got: "Di encam şer de beşekî mezin yê spayê pasdaran hat têkbirin, cîgirê fermandarê spayê pasdaran yê Şinoyê hat kuştin. Çend Pêşmerge şehîd bûne. Li navçeya Pîranşarê jî dîsa şer di navbera Pêşmerge û rejîmê de derket. Di şer de 13 caşên Îranê hat kuştin. Xebata PDK-İ'yê li hemû bajêr û navçeyan heye. Kar û xebat wê bidomin."

**'Xelkê sivîl hatin topbarankirin'**

Eqbal Şadî destnîşan kir ku şer belav dibe û ji Mako heta seranserê xwarê Pêşmerge bicîh bûye û wiha axifî: "Eger rejim êriş bike ser hêzên me wê bersiv bê dayîn û wê bergirî bê kirin û şer wê biqewimin. Piştî şer gund hatin topbaran kirin, xelkê sivîl hatin kuştin û hinek hatin birîndarkirin. Gundek bi tewawî wêran bûye. Bi çekên giran êrişî gund kirin. Piştî ku Pêşmerge derbas bûn şer bi dawî bûye, lêbelê gund hat wêrankirin, sivîl hatin kuştin û xelkê gund ji gundê xwe derkeftin."

**'Heta em bigihijin mafê xwe em ê têbikoşin'**

Endamê PDK-Î'yê ragihand ku şer wê dewam bike û heta kurd negihijin mafên xwe yên netewî, civakî, siyasî û komaleyatî li Rojhilatê Kurdistanê wê ev şer dewam bike. Şadî wiha dirêjî da axaftina xwe: "Ji ber ku rejîma Îranê ji bilî zimanê zordariyê ji tu zimanên din fêm nake. Rejîmê zêdetirî 35 sal in qada navnetewî li ber çav negirt û heta DYA'yê zordarî lê kir nêzî danûstandina bû. Binpêkirina mafê mirovan didomin. Gelê kurd eger bi xwe şoreş neke rejîm mafên kurdan nade. Bê şik ev şer wê dirêj be û dewam bike. Heta em dibigihijin mafên xwe em ê şerê xwe bidomînin."

**'Gelê kurd piştevaniya Pêşmerge dike'**

Şadî got gelê Rojhilat di vê qonaxa nû de piştevaniya xwe hertim bo Pêşmerge radigihînin û wiha axivî: "Xelkê wî gundê ku hatiye wêrankirin dibêjin gund û mal qûrbanî xwîna Pêşmerge be, bes Pêşmerge bi silamet bin. Bi giştî Rojhilatî Navîn vê carê bê kurd ser nagire. Kurd beşekî herî sereke ye di Rojhilata Navîn de. Bo wê yekê hemû kêşe çi li Tirkiye, çi li Îran, çi li Iraq û çi li Sûriyê be, bi vê yekê ve girêdane. Rojhilata Navîn bêyî çareserkirina pirsa kurd û Kurdistanê aramiyê nabîne. Xebatên me wê bodimin."

**Parlamenterê azerî: Herema Kurdistanê rê dide Peşmergeyên Rojhilat**

Nûnerê Parlamentoya İranê yê Eyaleta Azerbaycanê, bajarê Urmiyê bi navê Rûhullah Hezretpûr Rêvebiriya Herêma Kurdistanê tohmetbar kir ku wan rê daye hêzên peşmergeyên Rojhilat da ku êrişî pasdaran bikin. Hazretpûr got 'divê rayedarên Herêma Kurdistanê li ser vê yekê daxuyanî bidin!'

Li aliyê din Hezretpûr îddîa kir ku, çend mehên berê rayedarên Erebistana Sûîdî li Başûrê Kurdistanê serdana hêzên Rojhilatî kirine û xwestine wan qayil bikin ku ew li dijî Îranê şer bikin!

**YNK: Bi kuştina du pasdaran kêşe çareser nabe!**

Destpêka şerê navbera PDK-İ û rejima Îranê li Heremê Kurdistanê jî olan da. Berpirsê Yekitiya Niştimanî ya Kurdistanê (YNK) yê herema Şarezûr Cemîl Hewramî li ser şerê di navbera hêzên Rojhilatî û pasdarên Îranê de got, "bi kuştina yek-du pasdarên Îranê, kêşeya kurd li Îranê çareser nabe."

Hewramî li ser şerê navbera Pêşmergeyên PDK-İ û û rejima Îranê got, "Edî heyama xebata çekdarî derbas bûye. Bi kuştina yek-du pasdaran, kêşeya kurd li Îranê çareser nabe. Divê berê xwe bidin xebata sivîl."

Rejima Tahranê ji bo astengkirina xebatên PDK-İ'yê li ser YNK û Goranê zextan dike. Sala borî li Koyê ku li jêr desthilata YNK'ê de ye, asayîşê êrişê kampa PDK-İ kiribû û gelek kurdên Rojhilat brîndar kiribû. Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, ev êrişa ser kampê şermezar kiribû di derbarê bûyerê de lêpirsîn dabû destpêkirin.

Çend meh berê jî li herema Qendîlê li ser sînorê Îranê, gerîllayên PKK'ê li Peşmergeyên PDK-İ'yê reşandibûn û di encam de Peşmergeyek jiyana xwe jidest dabû û çendîn jî brîndar bûbû. PKK, ji PDK-İ'yê xwestibû ku heremê biterikînin.







# ZİMANGEH



Abdullah Kıran

Fîrdewsî (924-1020) di kîtêba xwe ya bi nav û deng Şahname yê de wiha dinivîse:
"Bes renc bordem der în sal- î sî
Zînde kerdem ecem re be dîn farisî"
Em dikarin wiha wergerînin kurdî:
"Di sî salan de min pirr cefa kişand
Ji bo eceman zimanê farsî vejand."
Şahnama Fîredewsî ji 60 000 malikan (beytan) pêk tê û nivîsandina wê bi qasî 35 salan ajotiye. Ji bo vejandina zimanê me jî hewcedariya me bi Fîrdewsiyên kurd hene. De werin em cardin dest bavêjin kare xwe.

Perizîn: Tapmak (Îng.: Worship) Rewşa perizîna Xwedê an pûtekî. Di zimanê me de gellek kes ji bo vê peyvê bi şaşî "hebandin" dixebitînin, ku ne rast e. "Hebandin" ji erebî tê û bi wateya, "hezkirinê" ye. Em dikarin hebandinê di zimanê xwe de biparêzin, bele bi wateya wê ya rastîn.
Mînak: Xwedê hebîna tu li zarokan nexî, ew biçûk in.
Mînak: Ez diperizm Xwedayê rastîn, hûn diperizn pûtan.
Li gor deman kişandina lêkera "perizînê"

**Dema niha û fireh:**
Ez diperizim
Tu diperizî
Ew diperize
Em diperizin
Hûn diperizin
Ew diperizin

**Dema borî:**
Ez perizîm
Tu perizî
Ew perizî
Em perizîn
Hûn perizîn
Ew perizîn

**Dema bê:**
Ezê biperizim
Tê biperizî
Ewê biperize
Emê biperizin
Ewê biperizin
Hûnê biperizin.

Derbend: Yasak (Îng.: Ban, Forbidden): 1) Astengên dadî (huqûqî) an derdadî yên li pêş kirina kar an tiştekî. 2) Tiştê ku divê neyê kirin, kirina wî hatiye qedexekirin. Çênabe ku were kirin; nelê ye.
Di zimanê me de van salên dawî gotina "qedexe" tê bikaranîn. Ev peyv ne kurdî ye û bi qasî ez dizanim ji farsî tê. Belê herçî gotina "derbend" e, xwerû kurdî ye. Em dizanin ku wateyek "bendê" jî "sînor" e. Der +bend= dereveyî sînor. Belê ji ber ku nayê bikaranîn dike ji zimanê me bikeve û hunda bibe. Me divê ku em vê peyva xwe ya şirîn vejînin. Ka em binerin kurd vê gotina ha çawa dixebîtinin.
Mînak: Îsal çûna zozanan derbend e.
Dewletê çûna zonanan derbend kiriye.
Mînak: Dewletê cardin çûna ser ziyareta Weysil Qeranî derbend kiriye.
Mînak: Divê derbendkirinên li ser zimanê kurdî tafilê bên rakirin.
Mînak: Ma wê ev derbendkirin heta kîngê bajon?
Mînak: Tu devê xwe bigire û nepeyive! Peyivîna te derbend e!

Berbend: Paralel ( Îng.: Parallel): 1) Xet an rastrûyên (düzlem) ku berê wan li hev e, li rûyê hevdu dinêrin. Tiştên ku li kêleka hevdu ne; bi berwarî dirêj dibin. Mesela rayên tirênê ji hev re berbend in.
Avahiyên berbend: (Paralel yapılar)

Kêzîn: Tünel (Îgn: tunnel, subway): 1) Qula ku di bin axê de hatiye vedan; av, wesayit an lûleyên enerjiyê tê re derbas dibin. 2) Lûleya bin avê ya ku du girên axê (reşahiyê) bi hev ve girê dide. 3) Riya ku hawirdora wê girtî ye.
Di Destana Memê Alan de, ji bo peyva "kêzînê" gotina "lexemê" derbas dibe. Dibe ku ev peyv jî ji zimanê me ketibe erebî.
Mînak: "Ew lexema ku Zînê çêkirye û her roj tê ba Memo û wî dibine." Bnr: Destanên Kurdî, Berhevoka Prof. Dr. Celîlê Celîl û Prof. Dr. Ordîxanê Celîl, Weş. Zel., r.45

Derivandin: Yarmak (Îng.: Chap) Ji bo ajotinê kolan û amadekirina axê.
Mînak: Pale çûne ku erde biderivînin.

Berhêl: Açı (Îng.: Angle): Berhêl; şekil an fîgurê ku ji du xêzikên ku ji nuqteyeke hevpar dertên çêbûye.
Berhêla Çik (andî): Dik Açı (Îng.: Right Angle)

Vêç: Yamuk (Îng.: Trapezius): 1) Tiştê ku bi ser aliyekî ve xwar e. 2) Çarkujê ku tenê du kujên wî berbend in.

Hevrê: Em hefteya borî li ser gotina "hevrê" rawestibûn. Ka em binêrin ku ev peyv di edebiyata me ya klasîk de çawa derbas dibe:
"Ne belçim man, ne sumbul man
Ne reyhan man, ne sorgul man
Ne hevrê man, ne hevdil man,
Tenê min heyf ji wan xwar e." (Feqiyê Teyran, Ey avê av)



### Nivîskar Siyamend Îbrahim:

# Wê Başûr û Rojava bibin yek

"Ji bo şandina nefta Rojhilata Navîn bo Ewropayê xetên nû lazim in. Yên heyî kar nakin û bûne hokara nakokiyan. Mimkun e ji aliyê Hesekê, Dêrazorê, Raqqayê û heta ser Deryaspî bernameyek bê danîn. Lê divê ew navçe ji destê DAIŞ'ê bên rizgarkirin. Helbet plan û stratejî hene. Ew ê Ewropa û Amerîka ji bo xwe korîdorekê vekin û rêyan hemû bikin yek. Ez wisa dibînim ku ew ê li bakurê Sûriyê herêmek bê danîn."

**M. Salih Bedirxan**

Hevpeymaniya Navdewletî ya bi dîplomasiya Herêma Kurdistanê dest bi piştgiriya Rêveberiya Xweser a Rojavayê Kurdistanê kir û bi hemahengiya hêzên kurd di şerê Kobanê de derbeyên giran li DAIŞ'ê da niha li Rojava bi cih dibe. Beriya bi çend mehan hatibû zanîn ku Amerîka li navçeya Rimêlanê û li Kobanê balafirgehên leşkerî datîne. Niha jî hat zanîn ku Artêşa Fransayê jî li Girê Miştenûrê yê Kobanê bi cih bûye û ew ê jî li heemê baregeheke leşkerî deynin. Li aliyê din tê ragihandin ku leşkerên Brîtanya û Rûsyayê jî li Rojava ne û rahêneriya şervanên YPG'ê dikin.

Rojnameger û nivîskarê kurd Siyamend Îbrahîm ku li Almanyayê dijî û geşedanên li Rojava rû didin ji nêz ve dişopîne ji BasNûçe'yê re axivî. Îbrahîm rexneyê li Rêveberiya Xweser a Rojava digre û eşkere dike ku divê rayedarên Rojava berjewendiyên xwe bifikirin û ji bo destkeftiyên kurdan hesaban bikin. Herwiha Îbrahîm dide zanîn ku zilhêzên cihanê ji bo danîna xetên neftê xwedî stratejî ne û ew ê nefta Rojava û Başûrê Kurdistanê jî bigihê ser Deryaspî.

**Leşkerên Amerîka, Brîtanya, Fransa, Almanya û Rûsyayê li Kurdistanê bi cih bûne û dest bi danîna baregeh û balafirxaneyên leşkerî kirine. Ev yek ew ê çi tesîrê li Rojava bike? Ew ê ji bo îdareya Rojava çi bi xwe re bîne?**

Niha di şer de kurd nehatine şikandin. Lê di warê siyasetê de, di warê rêzaniyê de, bi rastî kurd tên xapandin. Bi tu bingeha siyasî soz nedane kurdan. Dewletên Rojava berjewendiyên xwe yên leşkerî û siyasî ji ser kurdan dimeşînin. Mixabin weke peyman nivîsandin tuneye. Di nava xwe de, di nav hêzên ewlekariya kurdan an jî rêveberiya xweser, yanî tiştek fermî tuneye. Çekan didin, pereyan didin şêvirdariya leşkerî didin hêzên kurd ê li ser êrdê. Lê tiştekî kurdan li ser êrdê tune ye.

Nêzî 3-4 milyon kurd li ser xaka xwe dijîn tû îhtiras di komarê de tuneye ji bo Beşar Esad û Hikumeta Sûriyê û wan hêzên ku alîkariya wan dikin. Mixabin rastî di warê leşkerî de kurd xurt in, kurdan welat paqij kir ji DAIŞ'ê li Hesekê, li Qamişlo,li Raqqayê, li Minbicê. Lê tiştekî nivîsandî yê mafê kurdan yê paşerojê biparêze tune ye. Ew rastiyek e ber biçav e û divê em xwe nexapînin. Di warê leşkerî de kurdan gelek qurban û şehîd dan. Gelek xebatên kurdan hene ji bo rizgarkirina Kurdistanê. Ji roja Fransa hatine Sûriyê heya îro kurdan doza welatê xwe kiriye. Aniha dibistanên kurdî, pirtukxaneyên kurdî, programên kurdî li Qamişlo hatine danîn. Lêbelê ku rejîm xurt bibe dikarin di rojekê de werin girtin û bêjin 'tiştekî kurdan tune ye.'

**Yanî ne mimkûn e ezmûna Başûr ya sala 1991'ê li Rojavayê Kurdistanê dubare bibe?**

Ez ne di wê baweriyê de me. Li gor tiştên li ser xaka Sûriye çê dibe û bi taybetî li herêmên Kurdistana Sûriyê tiştekî wisa zehmet e. Em vegerin dîroka Rûsyayê, pişgirtiya wan ji bo Beşar Esad xûrt e. Rûsyayê piştgiriya Qazî Mihemed û Mele Mistefa Barzanî jî kir. Lê roja hat ser berjewendiyên wan, dev ji piştgiriya kurdan berdan. Dî dîroka xwe de rojekê jî Rûsyaya Sovyet mafên gelê bindest nas nekiriye û piştgiriya wan nekiriye. Sovyet li ava germ digerin wekî ku dibejin li Deryayêspî digerin.

Rûsya û Amerîka û bi hev re îro Sûriyê dorpêç dikin. Ji rêveberiya Demokratên Amerîkayê jî re tiştek nemaye. 2 -3 meh ji Obama û desthilatiya wî re maye. Bi rastî Obama, ji roja destpêka Şoreşa Sûriyê û heta niha ew helwesteke wisa xurt û bihêz nîşan neda. Desthilatiya Obama qels bû. Divê kurd tu hêviyê ji Obama nekin. Lê mimkûn e Komarxwaz bên ser desthilatê û ew tiştekî bêjin, û rola ku Demokratan bi cih neanî ew bi cih bînîn.

Eger metirsiyek mezin hat ser Kurdistana Sûriyê û bombeyên Artêşa Sûriyê hat Qamişlo xira kir, yan jî Amûde, Dirbesiyê bi xurtî bombebaran kirin wê demê mimkûn e Kurdistana Rojava jî bibe weke Başûrê Kurdistanê. Wê demê mimkûn e ku sîwanekî balkêş çêbibe, mafekî balkêş were pêş. Heta niha jî Rûsya yan jî Amerîka naxwazin tiştekî bikin. Ez ne di wê baweriyê de me, di wan sê mehên dawiyê de Obama û Amerîka tiştek bikin. Bernameya Rûsya û Amerîka aniha li ser wê yekê ye ku DAIŞ'ê ji Tirkiyeyê qut bikin. Rêya DAIŞ'ê zuwa bikin, pêyvendiyên wan û tirkan bibirin.

Divê em wisa bi riheti xewnan nebînin, ne mimkûn e Sûriye bibe Sûriyeya berê. Ew ê tiştek li Rojava pêk were. Ew ê ev yek çi be? bi ser kê ve be? Gelo di pêşerojê de wê Sûriye federal be? Lê mimkûn e konfederalî jî be. Kurd hene, durzî hene, elewî hene. Aliyê Dêrazorê û Helebê ew ê bidin kê? Ew ê herêmên elewiyan çawa bên diyar kirin? Li Helebê û li Raqqayê, em hêvî dikin ku kurd hişyar bin û nekevin bin berjevendiyên tu kesî. Rejîma Tirkiyê hesaban dike, rejîma Îranê jî welatên li herêmê ne li ser Sûriyê hesaban dikin. Hewce ye em sûdê ji dîroka xwe ya kevn û herifandina hemû şoreşên kurdan sûdê bigrin. Şêx Seîd û Şoreşa 61'ê ya Nemir Barzanî, şoreşên din ê kurdan li ber çava ne.

**Wisa xwiya dike ku Hevpeymaniya Navdewletî ji hebûna Esad ne raziye. Gelo mimkûn ew hêzên navdewletî piştgiriya kurdan bikin PYD û YPG li hember Beşar Esad derxin pêş?**

Redaksiyona leşkerî ya Artêşa Azad têk çû. El Nûsra, DAIŞ û yên din ne bi destê xwe ne. Tirkiye, Qeter û Erebîstana Siûdî wan di dehfînin û alîkariyê didin wan. Lê ji bo kurdan, kurd di alî leşkerî de hêzek xurtin. Rêveberiya Rojava jî piştgiriyê ji dewletên Ewropî distîne. Almanya, Fransa, Amerîka, Îngîltere ev piştgiriyê didin kurdan. Bi taybet di warê çekan de çekên baş didin kurdan. Lê di dawiyê de kurd neyên xapandin baş e. Ew dewletên niha li Kurdistana Rojava ne ji bo berjewendiyên xwe li wir in. Niha hêza herî zêde alîkariya kurdan dike Amerîka ye. Lê bi taybetî divê kurd bi wan alîkariyên Amerîkayê nexapin. Eger Rûsya û Amerika li hev bikin jî wê ji Beşar Esad re jî tiştekî federal hebe. Pirsa te di cih de ye. Pirseke cewherî ye. Kurd nikarin bi serê xwe nexşeya heyî li Sûriyê biguherînîn. Kurd bi xebata siyasî nikarin bibin hevsengî. Kurd di bin siya dewletên zilhêz de dimînin. Hesabên dewletên herêmê jî li ser Sûriyê hene. Hesabên Amerîka, Ewropa û Rûsyayê jî li Sûriyê hene. Aniha bûye weke maçeke futbolê kî kê bibe.

Li aliyê din hevbendiya di navbera Beşar Esad û PYD'ê jî dewam nake. Dîroka Beşar Esad û bi taybet dîroka Hafez Esad bi kuştina kadroyên kurd tijî ye. Niha îro diyalog û hevbendiyek heye. Divê hişê kurdan li serê wan be. Nasname ne didan me. Gundên kurdan, malên wan hemû wêran kirin. Ew koçber kirin. Ew maf nedidan ku em pirtukeke kurdî çap bikin. Ez ne di wê baweriyê de me ku Esad û rejîma Baasê tiştekî bide kurdan. Ew xeyal in. Bila kurd wan xewn û xeyala nebînin.





Erebên Sûriyê hêj di wê baweriyê de ne ku kurd jî ereb in û tiştek wan li ser erdê tune ye û dibejin mafê wan ê ziman û tiştekî din tuneye. Hêj ew rewşenbîriya wan ya demokrat û bi prensîb azadiyê û adaletê û wekheviyê li Sûriyê ji kurdan re naxwaze. Miletê Sûriyê ne kêfxweş in ku li Sûriyê tiştekî kurdan çê bibe.

**Operasyonên dawî yên li rojavayê Çemê Feradê ew ê çi guhertinan bi xwe re bîne? Ew ê korîdorek di navbera Kobanê û Efrînê de vebe gelo?**

Ew ê korîdorekê vekin, Amerîka, Almanya, Fransa, Rûsya û yên din jî wê destekê bidin HSD'ê. Operasyona Minbicê ecêb e. Minbic bajarê ereba ye, Cerablus bajarê ereba ye, li bajar bi xwe hebûna kurdan kêm e. Li derdora van bajaran gundên kurdan hene. Wê karibin bi operasyonekê wê korîdora di navbera Kobanê û Efrînê de vekin. Pirs li ser wê ye; Çima wê korîdorê vekin? Ji ber ku petrol heye. Amerîka petrolê dixwaze. Projeya Amerîkayê ew e ku neftê bibe Deryaspî. Wê neftê ji ku derê bîne? Aniha ji Iraqê tîne, ji Suriyê wê bibe. Wê ji Başûrê Kurdistanê bîbe. Li gor zanyariyên me aniha 2 balefirgehan ava dikin. Li Rîmêlan û li herema Kobanê balafirgeh tên danîn. Herwiha wê hêzên ereb hevkariya hêzên kurd bikin û Kantona Efrînê û Cizîrê wê bibe yek. Ev plana Amerîka û Ewropayê ye. Ew ê van kantonên heyî bi giştî bikin yek û rê bê vekirin ji Kurdistana Başûr heya Efrînê wê rê bê vekirin.

**Behsa xetên neft û gazê jî tê kirin li ser vê yekê raya cenabê te çi ye?**

Durust e. Ji bo şandina nefta Rojhilata Navîn ji bo Ewropayê xetên nû lazim in. Yên heyî kar nakin û bûne hokara nakokiyan. Mimkûn e ji aliyê Hesekê, Dêrazorê, Raqqayê û heta ser Deryaspî bernameyek bê danîn. Lê divê ew navçe ji destê DAIŞ'ê bên rizgarkirin. Helbet plan û stratejî hene. Ew ê Ewropa û Amerîka ji bo xwe korîdorekê vekin û rêyan hemû bikin yek. Ez wisa dibînim ku ew ê li bakurê Sûriyê herêmek bê danîn. Beriya wê ew ê metirsiya, xetera DAIŞ'ê zûwa bikin, qut bikin ji Tirkiye û ew ê kantonan jî bibin yek.

**Li aliyê din amaje li ser wê yekê heye ku rejîma Şam û Tirkiyeyê li Cezayîrê danûstendinan dikin. Gelo mimkûn e Şam û Enqere li ser rêgiriya pêşketina kurdan nêzîkî hevdû bibin?**

Nêzîkbûna wan ya herî muhîm û girîng wê di warê kurdan de be. Naxwazin kanton an jî hebûnekî kurdan li Cezîrê rêveberiyek xweser hebe. Herwiha naxwazin dibistan di wî warê de hebin û perwerdeya kurdî bidin zarokên kurdan. Naxwazin li wê heremê de navendên kurdan hebin. Duristbûna îdareyekê xurt li Rojava metirsiyê tîne ser Bakur jî. Bakur û Rojava digihên hevdû. Lê ez dikarim wê bêjim ew ê Beşar Esad û Erdoğan ne wek berê bi hev û din re pêywendiya çêkin û balyozê xwe sefaretên xwe vekin. Tenê wê di warê leşkerî û îstîxbaratî de bihev re kar bikin. Ew ê di warekî hindik be nehêlin kurd tiştek bikin. Ew ê hewl bidin dawiyê li hebûna kurdan bînin. Her dû rê jî ne ya Esad û ne jî ya Erdoğan ne cihê baweriyê ne. Lê aniha ketine aloziyên mezin. Tiştekî mezin li serê me hatiye, dive em miletê xwe biparêzin. Em doza xwe biparêzin ka ew şerê hanê digihe kuderê? Me çi sûdê kir? Dive lêvegerek xurt a kurdan hebe, lêvegerek siyasî dûrî rejîmê û Tirkiyê û Îranê hebe û mafê kurdan biparêze hebe.

"Amerîka petrolê dixwaze. Projeya Amerîkayê ew e ku neftê bibe Deryaspî. Wê neftê ji ku derê bîne? Aniha ji Iraqê tîne, wê ji Sûriyê ve, ji Başûrê Kurdistanê ve bîbe. Li gor zanyariyên me aniha li Rîmêlan û li herema Kobanê 2 balefirgehan ava dikin."

**Lî aliyê din Deriyê Sêmelka ku girtî bû hat vekirin û tê niqaşkirin ku wê di demekî nêz de Pêşmergeyên Rojava jî vegerin. Tu vebûna derî û nîqaşên di wê çarçoveyê de çawa şîrove dikî?**

Pêşmergê Rojava perwerdeyeke baş stendine û hêja ne. Qabîliyeta wan a leşkerî jî baş e. Şer kirine û hatinê perwerdekirin. Ji aliyê Almanya, Amerîka, Îtalya û gelek cihê din hatine perwerdekirin. Lê ez bawer nakim ku PYD wan qebûl bike. Em ji bîr dikin ku PYD partiyeke Stalînî ye. Li ser yek ramanê ye û tu kesî qebûl nake. Divê herkes di bin siya wan de be. Ew dibêjin, 'Pêşmerge bila werin, lê divê dibin di bin xizmeta me û li gor biryarên me şer bike.' Wê rewşê ne Hikûmeta Sûriyê qebûl dike ne jî şirîkên wan. Ez ne di wê baweriyê de me ku Pêşmergeyên Rojava vegerin Rojava. Rejima Sûriyê û hevbendên wê jî nahêlin.

Deriyê Sêmelka vebû ew hêja ye. Tiştên xwarinê, alîkariya mirovî ji Kurdistanê derbasî Rojava dibin. Nabe Deriyê Sêmalka bibe deriyê nakokiyên di navbera hêzên kurd. Dorpêçek mezin heye li ser heremên Cezirê û bi taybetî li ser her xaka Rojava. Mixabin herdu alî jî dikevin rikberiyê. Hewce ye herdu alî jî dev ji rikberiya siyasî û nakokiyên xwe berdin. Dema wê yekê hatiye ku herdu alî jî nêzîkî hevdû bibin û arîşeyên xwe çareser bikin rengekî nû di siyaseta xwe de derxin holê.

**Tê zanîn ku rayederên PYD'ê dijayetiya duristbûna dewketeke kurdî dikin. Herî dawî Salih Mûslim li Kerkûkê ragihand ku "dema netew-dewletan derbas bûye!" Cenabê te vê yekê çawa şîrove dikî? Çima PYD li dijî duristbûna dewleteke kurdî ye?**

Beriya her tiştî divê em vê babetê hinekî vekin. Dewleta netewî namire. Çi li Ewropa be, çi li xaqa ereban, fars, tirk û efxanîstanê be, wê netewe hebe. Ez li Almanyayê me. Almanî gotinên almanî bikartînîn. Zimanekî dikin qebûl nakin û naxwazin tu bi wan re bi zimanekî din qise bikî. Fransî jî wisa nin. Dema tu bi wan re diaxivî eger tu gotinên biyanî yên ne di zimanê wan de heyî bikarbînî xwe aciz dikin. Naxwazin bi zimanekî din qise bikin. Ez bawer nakim ramanên Salih Mislum weke wan demokrat be û ew çend li mafê mirovan xwedî derdikeve. Tu caran demokrasî li Rojhilata Navîn peyda nebûye. Tirk û fars û ereb ji wan ramanên xwe yên nijadperest daneketin. Her bi nivîskarê xwe , rewşenbîrê xwe, kultura xwe û bi zimanê xwe şanaziyê dikin. Em ne gihanê wê ku em wek Evropiya gelek demokrat bin.

Wê Kurdistan çêbibe. Dewlet xewna me ye li her çar perçeyan. Kes nikare li ber xewna miletê kurd bisekine. Li ser vê xewnê xwîna 2 milyon kurdan hatiye rijandin. Ez di referanduma ne fermî ya sala 2005'an de li Silêmaniyê bûm. Min çavdêriya komelgehê dikir. Miletê kurd ji % 99 li referandumê û bi hebûna serxwebûn ye. Em dixwazin ku xewna miletê kurd li Kurdistana mezin û li ser xaka xwe bijîn.

# Ji nû ve Proseya Çareseriyê?

Mehmet Kan

Piştî pevçûnên li bajaran ku nêzîkî salekî ye berdewam dike û bûye sedemê xesarên mezin, Dewleta Tirkiyê û PKK careke din amadekariya vegera proseya aştiyê dikin. Çend roj berê di çapemeniyê de bahsa derbarê hewldana diyaloga navbera PKK û Tirkiyê hat kirin ku li gor wê, aliyan li hevkirinê ku gerîllayên PKK'ê ji nav bajaran vekişin û Tirkiye jî rê ji bo derbasbûna YPG'ê vebike ku derbasî rojavayê çemê Firatê bidin. Beriya demekî operasyon û pevçûnên nav bajaran bidawî bûbû. Serokwezîr Binali Yıldırım hefta borî di daxuyaniyekî de got ku PKK ji bo diyaloga li gel dewletê hewldide û hinek nivîskarên nêzîkî hikûmetê jî eşkere kirin ku di navbera Serokê PKK'ê Öcalan û rayedarê dewletê de li İmaralıyê hevdîtin didomin.

Siyasetmedarê kurd Mihemed Emîn Pencwînî ku di navbera Tirkiyê û PKK'ê navbeynakarî kiribû jî gotibû ku ji bo destpêkirina proseya çareseriyê hêzên mezin ketine dewrê. Li aliyê din li gor hin çavkaniyên YPG'ê li jêr çavderiya Fermandarê CENTCOM'ê General Joseph Votel, rayedarên PKK'ê û yên Dewleta Tirkiyeyê li Kobanê derbarê hin mijaran de lihevkirine. Di demên dawîn de bêdengiya Enqerê yê beramberê operasyonên YPG'ê yên li herema Minbicê jî balêkişandibû û ev yek wek piştrastkirina van nûçeyan hatibû qebûlkirin. Artêşa Tirkiyê demeke dirêj li heremê baregehên YPG'yê dabû ber topan û destûr nedina ku li Minbicê operasyon bên kirin.

Derbarê mijarê de siyasetmedarên Bakûrê Kurdistanê ji BasNûçe'yê re hewldanên vegera ser maseya aştiyê axivîn.




**Sertaç Bucak (Serokê PDK-Bakûr): Heta çend mehên din wê şer bidome**

"Niha hemû kes wê bêje eger deng ji çekan qutbibe ew tiştekî gelek baş e. Xebera ku dibêjin dewlet û PKK hevdîtina dikin hîn nehatiye piştrastkirin. Ne PKK û ne jî dewletê wî tişti teyîd nekirine. Ez bawer im rojnameya ereb El-Hayat jî li ser wê mijarê hin tiştan nivisandibû û gotibû hevdîtin di navbera PKK û Dewletê de çê bûye. Niha hevdîtin çê dibin çê nabin ez nizanim lê, hêviya min ewe ku şer bê sekinandin. Lê wisa xûya dike ku dema mirov daxuyaniyên dewletê temaşe dike û êrişên PKK dinêre ewê pevçûn heta mehên 10–11 berdewam bike. Dibe ku li payizê li ser wê meselê hinek bipeyvin. Li aliyê din dibêjin ku Amerîka jî vegera proseya aştiyê dixwaze û bandora Washingtonê di vê mijarê de heye. Ew tişt rast e. Balyozê Amerîkayê Birêz Bass daxuyaniyek da û got, pêwîst e alî vegerin pêvajoya aşitiyê, ew tiştekî balkêş e. Wisa xûya ye ku heta niha tesîra wan jî ewqas nebûye ku ew pêvajo careke din dest pê bike. Em hêvidar în ku rewş baştir be."

**Sînan Çîftyûrek (Serokê ÖSP'ê): Îşaretên çareseriyê hene**

"Ev nêzî salekî ye ku li bajaran şerekî giran berdewam dike. Ev şer bi vî şeklî ne ji hêla PKK û ne jî ji hêla dewletê berdewam nake. Yanî her roj deh kes, bîst kes jiyana xwe ji dest dida. Ev şer bi vî şeklî nayê berdewamkirin. Îşaret hene ku pêvajoya çareseriya siyasî wê were rojevê. Li gori min îşaretên wê jî hêdî hêdî xûya dikin. Dewlet di çend hêlan de ketiye astengiyê, nikare wî şerî wîsa bidomîne. Çawên hêzên navnetewî li ser Tirkiyê, li ser Suriye, li ser Nisêbîn, li ser Cizîrê ye. Li wir çi bû dişopînin û dewlet bi vî awayî nikare berdewam bike. Di cenazeyan de bertek gihîştin serokê CHP'ê jî. Demsala turîzmê hat û dewleta Tirkiyeyê di alî aborî de ketiye tengasiyê. Divê şer bi awayekî bisekine. Ez bawer im PKK jî ku di encama şerê xendek û îlankirina xweseriyê ya bajaran de baş dît ku berdewama şerekî wisa ne rast e. Li bajaran ku erebeyên bomba barkiri tên teqandin herî zêde dibe sedemê dijberiya gel. Ez bawer im wê hewldanên çareseriyê dîsa destpêbike, îşaretên wê jî hene."

**Sıtkı Zilan (Sekreterê Hereketa Azadî): Înşallah li hev bikin**

"Her dû alî eger îrade nîşan bidin dikarin şer rawestînin. Tiştên din tevahî rîwayet in, tû kesî bi fermî tiştek negotiye. Dibejin îşaret hene, hinek dibejin me bihîstiye, înşallah li hev bikin. Tengasî û şer mutlaq li cihekî qediya yê û li hevkirin çêbûye û peymanekî çê bûye, şer jî bi dawî bûne. Wî şerî hinek girêdayê şerê Rojava ye û lê girêdayî blokek dine jî. Ew blok Îran, Esad û PKK û hinekî din in. Hêza PKK'ê ew bû, êdî zêde nikaribû şer bike, hêza PKK kêm bû û gel jî alîkarî nekir. Bajarên me xera dibin, wêran dibin. Însanê me hêm sîvîl û hem jî gerîla jiyana xwe ji dest didin. Teqtîqa PKK'ê xelet bû û PKK jî vê yekê bi zimanek nivco be jî qebûl dike."

**Nîmetullah Erdoğmuş (Parlementerê HDP'ê): Hêviya me aşitî û qedandina şer e**

"Dîlê me giştî dixwaze ku li hevkirin çêbibe, yên ku dilê wan dixwazin ku bi dilê safî wî şerî bisekine û aşitî were, behsa wê mijarê dikin. Lêbelê tû îşaretek me heta niha ne dîtiye. Ji bo di navbera PKK û dewletê de, an jî muxatabên din kî ne? HDP pir e. Heta qîmeta wê pirê ji bona wê meseleyê neyê zanîn wê çawa hevdîtin çê bibe. Wek ku tê zanîn li ser HDP'ê projeyek dimeşe. Dixwazin parêzbendiya HDP'ê rakin û ji meclîsê bavejin derve. Dema ku siyaset di nav meclîsê de nebe çawa ev şêrê mezin wê bi dizî bi dawî bibe. Ew ne mûmkûn ê. Daxwazên me, hêviyên me aşitî û qedandina şer e."

**M. Emîn Kardaş (Serokê PDK-T'ê): Gûhertina desthilatiyê ne karê kurda ye**

"Ez her dem dibêjim ev şer şerê AKP û PKK'ê ye. Ne şerê kurd û dewletê ye. Wek ku hûn jî zanin ev dû sal, sê sal in zelal xûya dike ku PKK dibêje, gerek ev desthilatdarî bê gûhertin. Em jî dibêjin gûhertina desthilatê ne karê kurda ye. Ew li gora berjewendiyê tirkan, çepê tirkan, Kemalîzmê tevdigerin û dibejin emê desthilatdariya Erdoğan xerabikin. Ji bo wê em ne bawer in ku tiştek wisa, yanê di navbera wan de hevdîtin hebe. Têkilîyên tên gotin ne rastin, spekulasyon in. Belkî xwe test dikin ku raya giştî çi dibêje. Lê her roj hikûmet, Serokwezîr, Serokkomar, her roj dibêjin em bi wan re hevdîtin nakin, divê PKK çekên xwe dayne, bin erd bike û koordînatên wan ji me re bêjê û hingê bi ku derê de diçin bila herin. Tiştên ku bahsa hevdîtinan dikin spekulasyon in, em bawer nakin."

**Abdurahman Acar (PAK): Destkeftiyên kurdan têk çû**

"Şerê navbera PKK'ê û dewletê eşkere ye, li hev hatina wan an jî hevdîtinên wan jî li ser we mijarê ye. Mesele ne Rojava ye, ne Bakûrê Kurdistanê ye û mesele ne şerê xendeka ye. Mesele têkçûna siyasete Kurdistanê ye. Di ev şerê ku bi salanê berdewam dike de destkeftiyên kurdan têk çû, ew jî bi alîkariya wan bû. Hevdîtin hebin jî wê ji bo gelê kurd çi encam derkeve holê, ji bo vê perîşaniya kurdan wê çi safî bikin? Ewê xira bikin paşê gazî bikin bêjin 'me wî karî safî kir, me çêkir.' Ew ne siyasetek rast e, ne siyasetek welatperwerî ye. Ev xerakirina siyaseta Kurdistanê ye, ez wîsa difikirim."

**Mesut Tek (Serokê PSK'ê): Armanc tenê rawestandina şer be, bi ser nakeve**

"Em hê tam nizanin ku hevdîtin dest pê kirine an na. Lê tecrube û ceribandinên dinyayê nîşan dide ku, aliyên şer hem pevdiçin û hem jî muzakere dikin, ev tişt mimkûn ê. Yanî hem şer hebe û hem jî muzakere hebin normal e. Li dinyayê gelek cara wisa buye. Li Baskê, li Îrlanda wisa bûye. Aniha em nizanin di navbera PKK û dewletê de çi diqewime. Eger PKK û dewlet runên û ev şer bisekine em pê kêfxweş dibin. Di wî şerî de muxatabê dewletê PKK'ye. Ew şer dikin, ji bili PKK'ê hêzên din nînin ku şer dikin. Lê ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd ne tenê PKK muxatab e. Ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd muxatab gelê kurd bi xwe ye. Hêzên siyasî yên kurd û Kurdistanê bi xwe ne. Welatperwer, nîştimanperwer, ronakbîr û însiyatîfên sivîl yên ku gotinek wan li ser çareserkirina pirsgirêka kurd heye ew hemû muxatab in. Guftugo û muzakereyên berê nîşan dane ku armanc tenê rawestandina şer be, bi ser nakeve."


Sînan Çiftyûrek — Sıtkı Zilan — Sertaç Bucak — Nimetullah Erdoğmuş — Mesut Tek — Mehmet Emin Kardaş — Abdurrahman Ecer



# Dema reformên dijî gendeliyê



RHK di 30 Gulanê de ji bona reforma li hember gendeliyê nexşerê eşkere kir û di serî de Bankaya Cîhanê û NY'yê ji bo pêkanîna nexşerêya reforman li dijî gendeliyê piştgiriya xwe ya eşkere kir.

Îbrahim Pirsûsî

Rêlibergirtina gendeliyê û pêkanîna çaksaziya darayî di rojeva Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) de ye. Şerê DAIŞ'ê, hatina penaberan bo Kurdistanê, ambargoya Bexdayê, daketina bihayê neftê bûn hokar ku li Kurdistanê qeyraneke darayî durist bibe. Rayedarên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji bo bidawîkirina qeyrana darayî bi rêxistinên navdewletî dîplomasiya cihanê re danûstendina dike. Akademisyen Yasîn Mehmûd ji BasNûçe'yê re pêngava reformên ji aliyê Hikûmeta RHK'ê ve hatibu destpêkirin nirxand.

Akademisyen Yasîn Mehmûd da diyarkirin ku ew pêngava reforman hem ji bona çareserkirina qeyrana aboriya Kurdistanê hem ji bona xûrtkirina baweriya gel bi hikûmetê jî gelekî girîng e.

Yasîn Mehmûd derheqê plana reforman de wiha axivî: "Ji bo rûberûyî gendelî, qeyrana darayî û reformên RHK'ê helwestek diyarkiriye û ji aliyê hikûmetê ve di asta herî jor de lijneyekî bilind hatiye damezrandin. Ji bo çareserkirina reforman Serokê RHK'ê du biryarên girîng derxistî bû. Reformên di çarçoveya nehiştina gendelî di nav hikûmetê da. Ya herî girîng ew e ku Serokê RHK'ê piştgirî dabû hikûmetê ji bona cibicihkirina nexşerêya reforman. Ji bona van mijaran pêwîstiya lêkolinê zêdetir heye li ser karê reforman. Bê gûman ev ne karê rojek û du roja ye. Bi taybet di nav wezareta darayî, wezareta petrol û enerjî, li nav karê îdarî de proseya reformê destpêkiriye."

Akademisyen Mehmûd da zanîn ku ji bo civakek pak û şefaf hikûmeta RHK'ê pêngavekî girîng daye destpêkirin. Mehmûd, got ji niha ve di dezgeyên îdarî de guherandin destpêkiriye û wiha berdewamkir: "Heman demê de Desteya Nezahe di warê îdarî de ji pêngavek daye destpêkirin û guherandin çêdibe. Di dema hikûmeta pêşî de gendeliyên hatine çêkirin li ser wana ji lêpirsîn hatiye destpêkirin. Hinek ji wan hatin girtin, hinek ji peywîr hatin dûrxistin. Kesên malê niştiman dizîbûn gelek ji wan hatin gûherandin. Ew sazî zêdetirîn wan niha hatine sererastkirin. Di şuna wan de kesên bi ezmûn, zana, pak û guncav hatine erkedarkirin."

**Pêwîst e xerc kêm û dahat zêde bibe**

Akademîsyen Mehmûd plana reforman wiha anî ziman: "Hikûmeta Herêma Kurdistanê di çarçoveya proseya reforman bi zelaliyet, kêmkirina xercî û zêdekirina dahatê ji xwe re dike hedef. Yani ew saziyên ku mesrefên fûzûli, xerckirina zêde dê di berçava re werin derbaskirin û xercên wan bê kêmkirin. Karên ne pewîst werin sekinandin. Xebatkarên zêde dê bên derxistin yan ji karekî guncav jê re bê dîtin. Armanc di vê derê de dahat were zêdekirin û xerc jî werin kêmkirin. Di vê derê de ancax bikaribe pêşiya krîza aborî bigrin. Dahat zêde bikin. Wek tê zanîn di bazara cîhanê de petrol erzan bûye. Ji ber wê ye kê ji pirsgirêka aborî berfireh bûye. Hêvîdar im em bikaribin pirsgirêkên xwe yên aborî çareserbikin."

Mehmûd derbarê sektora petrolê de de got firotina heta cîhekî şefaf e û wiha berdewam kir: "Meseleyên firotina petrolê heta cihekî şefaf e ji ber ku di hûrdekariya derxistin û firotina petrolê ji aliyê lijneyên zana ve tê kontrolkirin. Di vê derheqê de her meh ji aliyê Wezareta Enerjî yê petrolê de li gel Wezareta Darayî rapor tên amadekirin û eşkere dibin. Bi rasti derheqê bazarê û wê çawa werie firotin şert û mercên wan çiye, li gorî çi qanûn û yasayekî kar tên meşandin herkes ne şareza ye.

**'Dosya ji bo Lîjneya Destpekiyê hatine şandin'**

Yasîn Mehmûd birêveçûna karê pêngava reforma jî wiha anî ziman: "Wek tê zanîn Serokê RHK'ê Birêz Mesûd Barzanî ji dabû diyarkirin ku di 3 mehên borî de di çarçoveya ragihandina bernama reform û rûbirûbûna gendaliyê de, 93 dosyê gendeliyê pêşkêşî destê Destpakiya Giştî hatiye kirin, niha proseya lêkolîn û lêpirsînê hatiye destpêkirin, dadgeh kar li ser wan dosyayan dikin, herwiha beşek ji wan dosyeyan bo dadgehê hatine rêkirin. Em her dem behsa serwerbûna qanûnan û civakek dadmend dikin, ji bona wê yekê heger şik û gumanek li cihekî, li karekî de hebe pêwîst e di nêzikatiyê de em qanûn û adaletê esas bigrin. Derheqê ew buyeran da agahî kombikin pêşkêşê dadgehê bikin ku dadgeh biryarê bide. Ji bona ji holêrakirina gendelî û cihbicihkirina reforman di asta herî jor de Lijne ya Destpakiya Giştî hatiye avakirin û nabe kes ji gendelkar u fesadan re çavên xwe bigre."

**Wê çaksazî bi encam bibe**



Yasîn Mehmûd da xuyakirin ku ew di wê baweriyê de ne ku gendelî bi her awayî ji holê ranebe ji wê reform bi serkeftî pêk bên û wiha pêde çû: "Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di peyamekê de piştevaniya xwe ji bo plana reforma Hikûmeta Herêma Kurdistanê dabû nişandan, û gotîbû di nav Wezareta Pêşmerge de, komîteyek taybet bi serpereştiya Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê û bi hemahengî ligel Wezareta Pêşmerge û Serokatiya Encûmena Wezîran pêk hatiye, dest bi çaksazî di vê wezaretê de hatiye kirin û ew pêngav berdewam e. Her wiha reforma bingehîn li Wezareta Enerjî û Siruştî destpêdike. Li gorî rêkeftinan di 17 Nisana 2016 de me biryara herêmî ya hejmara (4) derxist ku hemû saziyên HRK'ê dergehên xwe ji bo dîwana çavdêriya darayî ya Herêma Kurdistanê vekin û pêwîste derheqê dahatên neft û şefafiyet li nav wan saziyan de bi berfirehî agahiyan bidin saziyên peywendîdar. Eger kesên tevlî karên gendeliyê bûbe di nav malbata min de be jî tu kes nikare wan biparêze, dê ew kesên gendelkar hesap bidin dadgehê. Di bi pêkanîna meseleya reformê de bila xelkê Kurdistanê piştrast be û ku ti kesek ji wê proseyê ne parêzbend e.'"

Akademîsyen di dawî axaftina xwe balê dikşîne ser rola Barzanî ya bi li ser çaksaziya darayî jî û wiha axivî: "Eger Serokê RHK'ê û hikûmetê bixwe pêşengiyê ji vê plana reforman re dike ez di wê baweriyê de me dê ev planê bi serkeve. Û berpirsiyariya me hemû welatiyan heye kû em ji pîştgirî bidin vê pêngava reforman. Bi raya min hemû welatiyên Kurdistanê ji bona gendelker derxistina holê xwedî erkê netevî ne. Berpirsiyariya me li hember civakê heye. Wekî kes yan wek rêxistinên sivil mafê herkesî heye ku tekoşînê bike li hember gendelkaran, qet nebe bila herkes dezgeyên peywendidar agahdar bike, malûmateki wan li ser çi buyerekê hebe, çi cihekî, li ser çi fermandareki, li ser çi dezgeyekê be pêwîst e em wan gilîbikin û hemû agahiyan bidin ew lijneya peywendidar a bi reforman. Pêwîst e em hemû kes dilsoz bin li hember welat û niştimana xwe."

## Parlementer Amîna Zikrî:

# Jin jî amadekariya serxwebûnê dikin

Hêmin Dildar

Ji destpêka şerê rizgariya Kurdistanê jinên kurd di her qonaxê de cihê xwe li cem merê kurd girtine û bi erka xwe rabûne. Bi zîrekî, qehremanî û lêhengiya xwe li hember dagirkeriyê bûne helwest, hevserên xwe, zarokên xwe ji şerê rizgariyê re amadekirine û ew bi xwe jî beşdarî têkoşînê bûne. Bi taybetî komelgeha Başûrê Kurdistanê zêdetir ji 200 sal e li hember neyarên Kurdistanê şer dike û heta niha zêdetir ji 500 hezar qurbanî daye.

Piştî duristbûna destkeftî û otorîteyeke kurd li Başûr jinên kurd ê li gel Pêşmergeyan li sengerên şer bûn beşdarî nav karên komeleyatî bûn û di nava siyasetê jî de cihê xwe girtin.

Amîna Zikrî Parlementera Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) ji BasNûçe'yê re axivî û di derbarê, beşdariya jinan a nav siyasetê û kar û barê jinan ê nav komelgehê şîrove kir. Zikrî amaje li ser wê yekê kir ku roj bi roj beşdariya jinan a li nav komelgehê zêdetir dibe û jin di her cihê biryardanê de xwedî erk in.Herwiha Zikrî rola jinên kurd jî bi bîr dixe û tekez dike ku jina kurd jî amadekariyan ji bo serxwebûnê dike.

**"Berxwedana jinan ji sê qonaxan pêk te"**

Parlementera PDK'ê Amîna Zikrî, bal kişand ser qonaxên berxwedan û xebata jinên kurd li Başûr û wiha axivî: "Em dikarin temsîlîyeta jinan a di berxwedana Başûr bikin sê merhele û qonax. Qonaxeke nehênî heye. Qonaxa şerê çekdarî heye û qonaxa siyaseta legal heye. Di dema netewek dest bi xebata netewî dike jin, kal, pîr, zarok hemû beşdarî wê rêgezê dibin. Piştî Şoreşa Gulanê ya 1991'ê Parlementoya Kurdistanê hat damezirandin û jinên Başûrî bi awayekî aktîv beşdarî nav siyasetê bûn. Ew beşdarî ne di asta pêwîst de bû lê gelekî baş bû. Dîroka xebata jinên kurd xwe dispêre Rêxistina Yekîtiya Jinên Kurd. Di sala 1952'an de bi fermana Mele Mistefa Barzanî, bo xwendin û pêşvçûna jinên kurd ew rêxistin hatibû danîn. Xebatên wê rêxistinê heta sala 90'î berdewam kir. Ji bo xwendina jinan gelek hewldan hatine dayîn û pêşveçûneke baş bidest ket. Nexwendina jinan êşek bû rêxistininên jinan gelek baş kar kirin.

**Rêjeya beşdariya jinên kurd a siyasetê ji ya jinên Iraqî zêdetir e**

Li aliyê din Zikrî aşkere kir ku di sala 2003'an jî de li seranserê Iraqê hewldanên baş pêk hatin ji bo xebatên jinan lêbelê ji ber tesîra olî li ser komelgeha Iraqê pêşveçûneke zêde li Iraqê durist nebûye ew pêşveçûn li Herêma Kurdistanê gelek bi serkeftî bi encam bûye. Zikrî wiha behsa berawirdiya komelgeya Iraqê Kurdistanê dike: "Piştî sala 2003'ê jî hewleke baş li seranserê Iraqê destpêkir û jin bi erka xwe rabin. Di sala 2005'ê de di Destûra Iraqê de biryar li ser wê yekê hat dayîn ku rêjeya jinan di cihê biryardanê de ji sedî 25 be. Bi taybetî di parlementoyê de gavên baş hatin avêtin. Komelgeha Iraqê komelgeheke dinî, eşaîrî û mezhebî ye xebatên jinan û rola jinan a di nava komelgehê de arîşeyan durist dike. Civateke ku mêr lê serdest be xebata aktîv a jinê baş nayê dîtin. Li Başûrê Kurdistanê piştî sala 2005'an gavên giring hatin avêtin. Ew qonax qonaxeke mohîm e. Di parlementoyê de, di Destûrê de gavên giring hatin avêtin. Weke, kuştina jinan a di jêr perdeya namûsê de, şahidiya jinê ya beramber bi du kesan, rêjeya beşdariya jinan ji sedî 25 bû ji sedî 30 vê yekê jî bi xwe re gavên nû û pêşketinên nû anî."

Herwiha Zikrî di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku di sala 2015'an de ji bo bi dawîbûna tûndiya li ser jinan û xurtkirina rola jinan di kabîneyê de hin guhertin hatine kirin û wiha got: "Piştî sala 2012'an qonaxeke nû hat danîn û jin beşdarî desteyên rêveberiyên hizbên siyasî bûn. Di sala 2015'an de di hikûmetê de hin guhertinên nû hatin kirin. Biryarên nû hatin stendin, mekanîzmayên kontrolkirinê hatin danîn. Lijne hat danîn ku her meh ligel Wezareta Dadê, Encûmena Jinan, Rayedarên Nehêlana Tûndutujiyê, û Serokwezîr danûstendinê li ser rewşa jinan bike. Rêveberiyên Nehêlana Tundûtijiyê hatin vekirin. Malên parastina jinan hatin avakirin. Ev prose tûndiya li ser jinan kêm dike. Bi giştî ji sala 2012'an heta niha dewreke baş heye. Jin di cihên biryardanê de, di ragihandinê de, di parlementoyê de di her warê komelgehê de beşdar dibin."

**"Jin beşdarî Lijneya Amadekar a Destûrê jî bûne"**

Parlementer Zikrî, herwiha da zanîn ku wan hewldaye ku jin jî din cihê xwe di nava Lijneya Amadekar a Destûrê de cih bigrrin û sê jin jî beşdarî van lijneyê bûne. Zikrî tekez kir ku wan ligel Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî hevdîtin çêkiriye û wiha berdewam kir: "Ji bo destûrê me lijneyek danî bû. Lijneya Aştiya Serkirdeyên Siyasî. Ez jî endamê wê lijneyê bûm. Me serdana hemû layanên siyasî kir. Me serdana Serokkomarê Kurdistanê Cenabê Serok Mesûd Barzanî kir. Me biryar li ser wê yekê da ku divê jin di kabîneya 8'an de cih bigrin. Me got; 'eger jin di kabîneyê de cih negirin em ê piştgiriya kabîneyê nekin' armanca me ya serekî ew bû ku em rê li ber tûndiya li ser jinê bigrin û hewl bidin ku jin beşdarî proseyê bibin. Me daxwazên xwe tomar kirin û radestî Lijneya Destûrê jî kir. Sê jin jî beşdarî Lijneya Destûrê bûn û di nava wê de cihê xwe girtin."

**"Sunneta jinan û firejinî kêm bûye"**

Di berdewamiya axaftina xwe de Zikrî di derbarê yasayên firejinî û rêliber girtina sunneta jinan jî axivî û da zanîn ku wan yasa derxistina da ku firejiniyê kê bikin û sunneta jinan jî bi dawî bikin. Zikrî herwiha ragihand ku sunneta jinan kêmbûye û wiha pê de çû: "Rêliber firejiniyê nehatiye girtin. Di yasaya firejiniyê de guhertin hatin kirin û ew rêje hat kêmkirin. Di warê yasayî hemû tişt hatiye kirin lêbelê di warê emelî de mirov nikare bêje ew bi temamî ji holê hatiye rakirin. Li navçeyên Iraqê rê li ber wê yekê vekiriye ku firejinî hebe. Qanûnên Iraqê wî mafî didin ku firejinî hebe. Li dadgehên Mûsilê û li navendên din wî karî bi encam dikin. Hebûna qanûna me wê rêjeya kêm kiriye. Ev yek jî aliyê baş ê wê qanûnê ye. Me qanûn li ser wê yekê ji derxistine ku sunnetkirina jinan hatiye qedexekirin. Yasaya me wisa ye; eger kî wî karî li ser jinê bike tê cezakirin. Eger bijîşkek wî karî bike tê sizakirin û ji kar tê dûrxistin. Eger ne bijîşk ne be jî tê cezakirin û girtin. Li mentiqaya Silêmaniyê, Çemçemal, li hin deverên Hewlêrê bi şêweyekî veşartî vî karî dikin."

**"Kêçên êzdî tên rizgarkirin"**

Amîna Zikrî êrîşa DAIŞ'ê ya ser Şengalê û dilbûna jinên êzdî jî bi bîr xist. Herwiha Zikrî daxuyand ku heta niha gelek keçên êzdî ji destê DAIŞ'ê hatine rizgarkirin û Serokwezîrê Kurdistanê Neçîrvan Barzanî û hevsera wî Nebilê Barzanî li ser vê meseleyê rawstiyane û ji bo ku keçên êzdî bên rizgarkirin hewl didin. Zikrî wiha behsa rizgarkirina keçên êzdî kir: "Êrîşa DAIŞ'ê ya ser keçen me yên êzdî karesateke mezin bû. Hikûmeta Herêma Kurdistanê, biryara wê yekê da ku wan keçen me rizgar bike. Li parêzgeha Duhokê navendeke rizgarkirina keçen ezdi hat danîn. Bi serperiştiya cenabê Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Neçîrvan Barzanî û Nabîle Barzanî jina Neçîrvan Barzanî hewldanên mezin hatin dayîn gelek keçen me yên êzdî hatin rizgarkirin û yên hatin rizgarkirin hatin dermankirin û tedawîkirin."

**"Jina kurd jî amadekariya serxwebûnê dike"**

Li aliyê din Parlementer Zikrî tekez kir ku rapirsiya serxwebûna Kurdistanê di rojeva wan jî de ye û ew ê jî piştgiriya rapirsiyê bikin. Zikrî tekez kir ku jina kurd jî amadkariyan bo rapirsiyê dike. Zikrî nerînên xwe yên ser rapirsiyê û amadekariyên rapirsiyê jî wiha şîrove dike: "Meseleya referandûma Kurdistanê, meseleyeke netewî ye. Bi sedan sal e kurd ji bo vê xewnê şer dikin. Binemala Barzanî bi tenê ev sed sal in bo wê xewnê şer dikin. Barzaniyê Nemir li ser vê xewnê serê xwe danî. Înşalah ew ê li ser destê Serok Mesûd Barzanî ev xeyala kurdan bi cih bibe. Jina kurd jî ji bo wê yekê kar dike. Ew ê di referandûmê de bi erka xwe ve rabin. Pirsa referandûmê ne pirseke rêgezî ye, pirseke netewî ye. Kurd hemû çaverê ne. Ew ê di demeke nêzde bêencamdan û wê kurd bigihên xewna xwe. Kî li hember serxwebûnê derkeve ew ê şermezar derkeve û ew ê nikaribe bersiva wê yekê bide."

Di dawiya axaftina xwe de Zikrî bal kişand ser diyaloga jinên kurd ê her çar parçeyên Kurdistanê jî û gotina xwe wiha bi dawî kir: "Di sala 2012'an de li Amedê me Kongreya Netewî ya Jinên Kurd li dar xist. Ji herçar parçeyên Kurdistanê jin beşdar bibûn. Me Hewldana Jinên Kurd ava kir û me biryar da kongreya duyem li Hewlêra paytext bêkirin. Di sala 2013'an jî de me li Hewlêrê konreya xwe ya duyem encam da. Me biryar da ku navendeke jinên kurd vekin. Lê ew pêk nehat. Jinên nêzîkî PKK'ê nêzîkî wê yekê nebûn."



# Jiyana sewalkaran sekinî!

Rêzan Karwan

Li Bakûr ev saleke rewşeke awarte serwer e û hemû warên jiyanê ketiye bin bandora vê yekê. Li aliyekî şer û pevçûn, li aliyekê koç û li aliyekê hewldanên pêkanîna debarê. Di vê heyamê de ku heta niha jî didome û bi dehan dever qedexe ne de ne tenê mirov hatin kuştin an jî warên xwe terikandin. Digel şewitandina xaniyan û hilweşandina bajaran aboriya herêmê jî hat têkbirin. Qedexe ne tenê li pêşiya derketina însanan bo derve, li ser jiyana xelkê û deverê û her tiştî asteng bû.

Sewalkarî ku beşeke mezin a xelkê debara xwe li ser pêk tîne û di aboriya herêmê de xwedî rolek sereke û girîng e, piştî destpêkirina şer zirarek mezin dît. Ji ber ku şerê û yê li herêma kurdan ji salên berê dijwartir û berfirehtir bû û ne tenê ciya navenda bajar û bajarokan jî veguherîn qada şer. Ji bilî wê yekê dîsa ji berê cudatir, bi dehan dever, herêm û zozan jî weke herêmên leşkerî hatin destnîşankirin. Van hemûyan li ser sewalkariyê bandorek gelek neyînî kir û kesên ku bi vî karî mijûlin derd, kul û gazindên xwe ji rojnameya me re vegotin.

Li Borsaya Sewalan ya Amedê jî ew geşbûn û kêfxweşiya berê xuya nake. Xwediyên sewalan jî û bikir jî bi wê kelecana berê nayên vê qadê. Em jî weke BasNûçe çûn û li ser vê mijarê lêkolînek kir. Em bi xwediyên pez, berx, bizin, ga û çêlekan re ango bi xwediyên sewalan re axivîn. Me li jor jî daxuyakirin ku mîna beş û warên jiyanê yên din sewalkariyê jî hêz û coşa xwe ya berê winda kiriye.

**'Jiyana me rawestiya'**

Yek ji wan kesên ku ev bi salane vî karî dike rewşa ew tê de wiha rave dikin: "Vî şerî bandor li ser hemû warên jiyanê kir. Maddî û manewî jiyana me rawestiya. Beriya şer karê me baş bû û em bi serbestî digeriyan. Lê niha di navberên kurt de jî çend heb xalên kontrolê danîne. Divê ev rewşa awarte bê sekinandin da ku êdî xelk li ser kar û barên xwe bi serbestî bijî û xebatên xwe bike. Xaniyên me xerab kirin, malên me şewitandin perê me, zêrê me giş birin. Gelê me ji vir koç dikin. Em naçin tu deran em ji birçîna bimirin jî em naçin tu deran û warên xwe naterikînin. Li her sed metreyan qereqolek çêkiriye ji bo firokeyên xwe balafirgehek çêkirine û polîsên wan bi rihên dirêj weke endamên DAIŞ'ê ne û ev tirsê li xelkê herêmê diafirîne. Êdî tu kes nikare vî karî bi hêsanî bike. Her der hatin xerabkirin û heta ku em ji navenda bajêr jî tên bi dehan lêgerîn û xalên kontrolê hene. Wek din ji xwe xelk perîşan bûye. Tu tiştê milet ne hiştin, kuştin wêrankirin û kavilkirin me hemû dît. Debarana bi hezar kesan jî li ser vî karî ye û lêbelê ew hat radeya sekinînê. Hemu beşên jiyanê zirarek mezin dîtin. Niha ne tu kes nikare bikire û ne tu kes nikare xwedî bike."

**'Her der bûye qada şer'**

Em bi kê re baxivin tevî hemû êşan jî peyva aştiyê ji zimanê wan nakeve û daxwaz û hêvî her yek e. Aştî û aramî. Tirsa ku li ser xelkê herêmê hatiye afirandin li vir jî xwe dide der û gelek kes naxwazin baxivin û tenê dibêjin 'mala me mîrat bû ma em ê çi bêjin' mamê Evdil Baqî jî yek ji wan kesan e ku ji Sûrê neçar maye derkeve û dibêjê ku di nava vê rewşê de ez hewl didim ku vî karî bikim ku debara wî li ser vî karî ye. Dipirse 'em ji gundan revîn hatin bajaran û êca em ji vir bi ku derê ve biçin û wiha daxive: "Beriya şer rewşa me baş bû. Herkesê zirar dît. Em dixwazin ev rewşa awarte ji ser welat rabe. Em ji gund hatin vir. Lêbelê ne ji xweşiya xwe em hatin bajêr gundê me mala me şawitandin zext li ser me habun em jî neçar man ku koçî navenda Amedê bikin. Di salên 90'î de rewş wisa bû û wê demê gund dihatin şewitandin. Şer li çiya bû. Aniha em lê dinêrin ku her der bûye cihê şer. Bajarên me tên xerabkirin xelk niha jî ji bajaran koç dike û ev gelek dijwar e. Ev jî me pir dêşîne ji ber ku hêviyek din ava xelkê de avakirin gotin vaye em lihev hatin û qasî çend salan aramiyek ket nava axa me. Herkesek bi serbestî digeriya kuştin nebû, cenaze nedihatin dilê xelkê mîna berê nedişewitî, lê niha dilê me ji salên berê qat bi qat zêdetir hat şewitandin. Temenê min vaye bûye 65 û heta niha tiştekî wisa nedît me herdem digot salên 90'î lêbelê zilma ku niha tê kirin tu deman çênebûye. Wek hemû warên jiyanê yên din, sewalkarî jî gelek bi zehmetî ket. Xwedîkirin, çerandin û firotin heta anîna bo vê bazarê jî ev hemu gelek bi zor ketine. Her tişt buha bûye û êdî xelk jî mîna berê nayê bazaran û pez nakire ji ber ku xelk bi derd û kulên xwe ve mijûl e. Ne tenê li Amedê li bajarên din jî rewş bi heman awayî ye. Mesela beriya vî şerî ji her derê dihatin vir lê niha tu kes nayê. Hêviya me ew e ku ev şer bisekine û ev xwîne raweste. Em mexdurin wek herkesê."

**"Halê me nemaye ku em sewalan bifikirin"**

Di dengê berf û pezan de em axaftina xwe ya bi sewalkaran re didomînin û ji wan bandora şer a li ser karê wan dipirsin, mamê Ehmed ku ev zêdetirî deh salan e vî karî dike û ji Sûra wêranbûyî ye wiha daxive: "Êdî hal nemaye ku em sewalan bifikirin, lê em mecbûrin ku vî karî jî bikin ku ez bi xwe nêzî 10 salan e di nav vê xebatê de me. Niha warên me xerab dikin. Yên ku tu gunehên wan suçê wan nîne jî dikevin bin tesîra vî şerî. Em nikarin heywanên xwe ji malan dur bixînin ji ber ku derveyî bajaran jî hatine qedexekirin. Ez bi xwe di nav hindirû Sûrê de rûdinim. Hêviyek hebû ku ev şere bisekine lê piştî hilbijartinan em hatin vê rewşê. Karê me jî pir dijwar bûye. Ji xwe êdî tu kes naxwaze xwedî bike mîna berê. Her tişt buha ye û di ser de jî qedexe, şer û kuştin. Çi ji destê me nayê, em daxwaza rawestandina şer dikin. Karê me gelek kêm bûye. Niha li Sûrê gotin qedexe rabû lê belê hê jî dorpêça li ser navçeyê didome û ez di nav van şertan de hewl didim ku sewalên xwe xwedî bikim û debara xwe bikim. Bi dehan qereqolan çêdikin û her der kirine herêmên leşkerî. Em tenê aştiyê dixwazin em tiştekî din naxwazin. Bila êdî tu kes neyê kuştin leşker an gerîla bila tu kes neyê kuştin."

**"Rewş tu carî evqas xerab nebû"**

Em gera xwe ya di nav bazarê de dewam dikin û vê carê jî guh didin mamê Evdila ew jî di vî karî de ne nûye û dibêje min tu carî wek îsal rewş xerab nedîtiye û wiha pêde diçe: "Mala me hat xerabkirin, bajarên me xerabkirin û ji Colemêrgê heta vir bi dehan bajarên me wêranbûn. Divê neyê efûkirin û divê kesên bûne sedem werin darizandin. Karê me beriya şer asayî bû me digot aştî çêbe xwîn ne rije polîs jî yê me ye û gerîla jî yême ye. Me kir û ne kir nebû û piştî hilbijartinan destbi şer kir. Got divê ez kurdan biqedînim, bi sedan însan hatin kuştin û ev di rûyê rayedaran de ye. Beriya çend salan digot ev mesele ya min e û em hatin xapandin ku niha rewş hat vê astê. Tim dibêjin em ê biqedînin û me çend hezar kuştiye û lêbelê divê bizanibin ku kurd xelas nabin û em her zêde dibin. Niha bajarên me jî xera bike, wê sibê ev derbasî wan deran jî bibe ev polîtîka wê bibe sedema şerekî gelekî girantir. Wê bajarên xwe jî bidin xerabkirin. Divê ev şer bisekine. Rewşa tu carî ewqas xerab nebû."

**"Li Sûrê 60 qesab hebûn"**

Osman ku karê sêwalkariyê dike û her serê sibehê hêj zû tê bazarê û ji bo ku heqê keda xwe bistîne hewl dide ji me re daxive û dibêje: "Me îro 24 heb standiye û lê me hêj yek jî nefirotiye. Ji ber ku bikir tune ye. Beriya niha ji Şirnex, Colemêrgê û derên dihatin û bi kamyonan dibirin lê êdî tu kes nayê. Em şepirze bûne û em bêkeys in. Dîsa jî em dibêjin xwedî avekê di vî agirî de bike. Çiqas em êşiya bin jî dîsa em destê xwe dirêj dikin û dibêjin aştî. Ji Bêdlîs, Sêrt û Wanê dihatin ji ber ku ev der navendeke û ji her bajarî dihatin. Ev nêzî salekê ye kar sekiniye. Dema şer û pevçûn hebe û rewş awarte be helbet tu kes rehet nabe û ji tu deran nayên. Wê demê derdê însanan dibe ewletiya canê wan bû. Qetlîam pêkanîn. Di nava Sûrê de herî kêm 60 qesab hebûn her yekê rojane bi dehan berx dikirîn û hemû giş girtîne û yê vekirî jî kar nake, milet jî û kar jî qeland. 2015'an herkes li ser karê xwe bû, aramî hebû rewş baş bû. Ne tenê qesab, dikandar hemû ketin bin tesîra vî şerî."

### Kurdnas Dr. Michael Chyet:

# Divê kurd fêrî herdû alfabeyan bibin

**Elî Paksêrêşt**

Kurdologê emerîkî Dr. Michael Chyet di derbarê xebatên xwe yên li ser kurdî ji BasNûçe'yê re axivî. Lêkolîner û wergerê kurd Elî Paksêrêşt ji bo xwînerên BasNûçe'yê bi zimannasê û kurdologê amerîkî re axivî. Dr. Michael Chyet, balê dikşîne ser alfabeyên kurdî û tîne ziman ku kurdên soranîaxêv û kurmancîaxêv nikarin berhemên hevdû bixwînin ev yek jî dibe kêfxweşiya neyarên kurdan.

Herwiha Dr. Chyet wiha got: "Hem ji ber nezanîna alfabeya erebî û hem jî ji ber nezanîna zaravaya soranî, kurdên Bakur nikarin ji pirtûkên xûşk û birayên xwe bixwînin. Berevajî jî, kurdên soranîaxêv nikarin kitêbên pismam û dotmamên xwe yên kurmancîaxêv bixwînin. Ev yek kêfa dijminên kurdan tîne."

Chyet dide zanîn ku divê kurd herdu alfabeya fêrbibin û herdu alfabe jî parçeyek in ji nasnameya kurdan. Chyet derbarê xebatên xwe û boçûnên xwe yên derbarê pirsgirêka zimanê kurdî pirsên BasNûçe'yê bersivandin.

**Michael Chyet kî ye? Çend zimanan dizane? Hinekî xwe ji xwendevanên me ra bide nasandin.**

Ez xelqê Amrîkayê me; li Cincinnati ya Ohio ji dayik bûm e. Herwekî diya min bi xwe; bavê min jî xelqê Boston, Massachusetts bû. Xûşkeke min heye, salekê ji min piçûktir e. Her ji pola pêşîn da dê û bavê min ez şandim xwendegeheke seretayî ya taybet bi cihûyan, û têda ez hînî zimanê îbranî bûm. Li pola heftem sala pêşîn ya xwendegeha navîn, ku em hînî zimanê latînî dibûn, ez varqilîm ku hînbûna zimanan bi dilê min e; her wê salê min destpê kir xwe hînî çend zimanên din bikim. Bi alîkarîya kitêban; min xwe fêrî zimanên elmanî, frensî, spanî, rûsî, û yîdîş (zimanê cihûyên rojhilata ewropayê ku zimanê bav û pêşîyên min e) kir.

Li 13 saliya xwe de, bi malbatî ve em çûne Qudusê û min nîva duwem ya pola heştem li wir xwend. Her wê salê ez dest bi hînbûna zimanê erebî bûm. Berî çûna me, bavê min pala min dabû ku ez xwe hînî erebî bikim, wî bi xwe zimanê erebî li zanîngehê xwendibû, û wî wisa gote min, 'tu hez ji zimanan dikî, û ji ber ku tu 'îbranî dizanî, dibe ku li Qudusê tu yê bixwazî hînî erebî jî bibî, ew herdu ziman, ku zimanên samî ne, nêzîkî hev in.' Û bi rastî wisa bû. Li Qudusê min çend pirtûk yên ji bona hînbûna erebî bi dest xistin, û di her firsetê da ez bi ereban ra bi zimanê wan dipeyivîm. Gava ku ez ji xwendegeha navîn mezûn bûm, min biryar da ku li zanîngehê ziman û çandên Rojhilata Navîn bixwînim. Bê guman erebî, farisî, tirkî û kurdî.





**Çima tu hînî ewqas zimanan bûyî? Gelo tiştekî taybet di vî karî da heye?**

Herkes pûte bi tiştekî dike, û li Emerîka kêm kes bi zimanên biyanî eleqedar in – bi kêmî ve li Cincinnati li salên 1960'an wisa bû. Heweskarîya piranîya kuran bi sportê ve bû. Ez tek û tenha bûm, û bi tiştên cihê ve mijûl dibûm ku yek ji wan hînbûna zimanên biyanî bû. Bi derbasbûna salan, ne ziman bi tenê, lê gelên ku bi wan zimanan dipeyivin jî bala min kişand. Niha ez xwe wek zimanzan û folklornas didim nasandin.

**Bo çi tu hînî kurdî bûyî û çawan te destpê kir?**

Di destpêka xwendina min li zanîngehê da, ez bi govendên gelêrî jî eleqedar dibûm ku îro jî wisa ye û baş tê bîra min ku rojekê min tarîfa govendeke xweş, ya bi def û zirne, dixwend, û têda dinivîsî ku ew govenda hanê ya kêmanîya kurdên Rojhilatê Tirkîyê ye. Ez 18 salî bûm hingî, û ew yek cara pêşîn bû ku ji tirkan û pêve haya min ji hebûna gelên din li Tirkîyê çêbû ku min fêm kir ku govendên wisa, yên kurdan e. Min xwest hînî zimanê wan jî bibim. Ev jî destpêka eleqedarbûna min bi kurdan ve bû.

**Rewşa zimanê kurdî çawan dibînî? Kurdî, zaravên kurdî di çi rewşê de ne?**

Zaravayên zimanê kurdî, alîyekî dewlemendîya wî zimanî ne. Bivê nevê, hebûna zaravayên cihê-cihê rastîyek e û bila em li ser alîyên wan yên erênî bifikirin. Çiqas em hînî zaravayekî din bibin, ewqas zanîna zaravayê me bi xwe jî kûrtir û dewlemendtir dibe. Xewna min ev e, ku hemî zarokên kurd bi herdu zaravayên serekî -kurmancî û soranî) bi herdu alfabeyan bêne perwerdekirin. Divê em hertim himberî wan herduyan bi wekhevî rabin û rûnin. Kurmancî parçeyek e ji mîrata hemî soranîaxêvan, û her wisa soranî jî parçeyek e ji mîrata hemî kurmancîaxêvan. Ferq û cudahî hene di navbera wan da, herwek ferqa di navbera mirovan da. Bi dîtina min, divê ku em rêz li wan ferq û cudahîyan bigrin, û hebûna wan wek dewlemendîya kurdewarî bibînin. Her wisa, zimanên Kurdistanî yên din jî hene, wek zazakî û hewramî û sûryanî ku divê em ji ber çavan wenda nekin. Di herêmên xwe da, gerek ku hemî zarok wan jî bixwînin.



**Arşîva kurdî ya nivîskî lawaz e, zêdetir zimanekî devkî ye. Tu vê yekê çawan dibînî?**

Zargotin, kelepûr û folklora kurdî ya devkî yekcar dewlemend e. Ev yek egera serbilindîya hemî kurdan e. Gelek kitêb û pirtûk, govar û rojnameyên kurdî tên weşandin. Nemaze li pêvajoya van bîst salên dawîyê, lê kêm kurd wan bi dest dixin û dixwînin. Hêvîdar im ku hejmara xwendevanên kurd dê her û her zêde be.

**Gelo kurdî ewqasî dikar bibe zimanê zanistîyê jî?**

Çima na? Ev yek li ser kurdan bi xwe dimîne. Eger bawerîya kurdan bi xwe heye, her tişt mimkun û pêkan e.

**Hin kurd qala "zimanê yekgirtî" dikin. Wek mînak kurmancî li Başûrê Kurdistanê ji pergala fermî hatiye dûr xistin. Tu vê yekê çawa dibînî?**

Wek min berî jî gotiye, xewna min ev e ku sîstemeke perwerdekirina zarokên kurd bê afirandin, ku li gorî wê hemû xwendekar û şagird dê herdu zaravayên serekî yên zimanê kurdî – bi herdu alfabeyên kurdî (latînî û erebî) bixwînin û binivîsin. Ev yek bi tenê pirseke bi zimên ve girêdayî nine. Belkû meseleyeke civakî ye jî. Em Kurdistaneke mehkem û yekgirtî dixwazin, ku paşeroja wê ronahî ye ne wisa? Vêca fêrbûna herdu rastnivîsên kurdî – çi latînî û çi erebî – parçeyek e ji nasnameya hemû kurdan e. Hem ji ber nezanîna alfabeya erebî û hem jî ji ber nezanîna zaravayê soranî, îro kurdên Bakurê Kurdistanê nikarin pirtûkên xûşk û birayên xwe li naverasta Kurdistanê bixwînin. Berevajî jî, kurdên soranîaxêv nikarin kitêbên pismam û dotmamên xwe yên kurmancîaxêv bixwînin. Ev yek kêfa dijminên kurdan tîne. Em çima kêfa wan bînin? Bi dîtina min, tucaran çênabe ku em zaravayekî li ser zaravayekî din ragrin. Ev yek dibe gefeke mezin li ser yekgirtina gelê kurd.



# Diyarbekir de kûrsê sorankî

**Hebûn Okçu**

Diyarbekiriji şûbeyê Diyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî de, kursê sorankî de verê mamosta Seywan Seîdîyanî de musenê sorankî. Kurs bi di grûban dewam keno. Seke yeno zanayîş kurdî bi panc lehçeyan qisey kenê: kurmancî, soranî, zazakî, hewramî û lûrî. Nê lehçeyan ra zî Kurdistanê Bakurî de kurmanckî û kirdkî yenê zanayîş. La soranî Kurdistanê Başûrî de sey ziwanê resmî ya, ancî Kurdistanê Rojhelatî de zî lehçeya sereke ya. Coka Diyarbekir de musayîşê soranî teleb beno û eleqe vîneno.

Mamosta Seywan Seîdîyan ke şarê Mahabadî yo la bî di serrî Diyarbekir de ciwîyeno, derheqê kursî de wina melumat da: "Çend kesan mamosta Roşan Lezgînî ra pers kerdbi ke senî bimusê sorankî. Ey zî mi ra va, ma êdî çarçewayêka hîra de kurs îlan kerd û Weqfa Beşîkçî de dest pêkerd. Ma sere de nêzana go çiqas waştiş bibo, çiqas eleqedarî virazîyo. Labelê ma va çend kesî benê wa bibê, ma go dest bi kurs bikin. Nika ez ewnîyena ke gelêk eleqedarîye esta. Ma di grûbî saz kerdî û eleqeyê kursîyeran zî zef baş o. Ez hêvî kena ke kursîyerê ma zêde bibê."





Mamosta Seywan Seîdîyan ke hunermendêko zafhet o, derheqê kursî de wina melumat da: "Ma zanê ke musayîşê ziwanî zehmet o, no sebeb ra ma wazenê heta serrêk-di serrî qasê vîst kesan perwerde bikerin, wa bieşkê soranî xeberî bidê, binusê, biwanê. Heta tercumantî zî bikerê. Ma go hêdî-hêdî bi no armanc kursîyeranê xo perwerde bikerin. Derdê ma tena ziwan musnayîş zî nîyo. Ma wazenê mîyanê heme kurdan de têkîlî virazîyo. Sînorê dewletan ma rê nêbo asteng. Ma heme ziwananê xo bimusin. Ez nika kurs de hîna zaf soranî xeberî dana û kursîyerî se ra 70-80 mi ra fehm kenê. No nîsbet seba qiseykerdişê sorankî hêvî dano mi."

**'Ma wazenê mîyanê heme kurdan de têkîlî virazîyo'**

Mamosta Seywan Seîdîyan ke hunermendêko zafhet o, derheqê kursî de wina dewam kerd: "Ma zanê ke musayîşê ziwanî zehmet o, no sebeb ra ma wazenê heta serrêk-di serrî qasê vîst kesan perwerde bikerin, wa bieşkê soranî xeberî bidê, binusê, biwanê. Heta tercumantî zî bikerê. Ma go hêdî-hêdî bi no armanc kursîyeranê xo perwerde bikerin. Derdê ma tena ziwan musnayîş zî nîyo. Ma wazenê mîyanê heme kurdan de têkîlî virazîyo. Sînorê dewletan ma rê nêbo asteng. Ma heme ziwananê xo bimusin. Ez nika kurs de hîna zaf soranî xeberî dana û kursîyerî se ra 70-80 mi ra fehm kenê. No nîsbet seba qiseykerdişê sorankî hêvî dano mi."

'Malimî, avûkatî, hunermendî, rojnamegerî, wendekarî yenê kursê'

Îdarekaranê şûbeyê Diyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî ra mamosta Roşan Lezgînî zî derheqê kursê sorankî de wina melumat da:

"Mamoste Seywan Saîdîyan bî di serrî Dîyarbekir de yo. Hunermendêko zefhet o; zaf hunerê ey estê. O bi xo Mahabad ra yo, soran o. Tîya Dîyarbekir de ciwîyayîşê ey, semedê Dîyarbekirî şansêko zaf muhîm o. Ma waşt Dîyarbekir de bîyayîşê ey, her hetan ra feyde biresno ma; hem kursanê ziwanî û hem kursê hunerî bido. Weqfa Îsmaîl Beşîkçî zî siyaset ra wetêr wazena xizmetê kurdan û kurdayetî bikero. Wazena ziwanê kurdî, hunerê kurdî rê xizmet bikero, çîyo ke feydayê kurdan tede esto bikero. Coka ma kurs da destpêkerdiş. Gelêk kesan muracat kerd. Hewteyêk verê cû zî ma yew kombîyayîş kerd, nê kesanê ke muracatê kursî kerdo ma tîya kom kerdî. Ma înan ra pers kerd, ma va, kamcîn saete kamcîn roje şima rê munasib a. Taykine vat mîyanê hewteyî de, badê mesaî bo, taykine zî vat badê hewteyî bo. Axir ma gorê wextê kursîyeran di grûbî viraştî; grûba yewine rojanê sêşeme û çarşeme, saete mîyanê 18:00-20:00 de, grûba diyine zî rojanê şeme û yewşeme saete mîyanê 10:00-12:00 de dewam kena. Her di grûban de qasê 40 kursîyerê ma estê. Mîyanê kursîyeran de malimî, avûkatî, hunermendî, rojnamegerî, hemşîreyî, muhendisî û wendekarê unîversîte estê."

**Kursîyerî wazenê têkilîya xo û kurdanê Başûr û Rojhelatî xurt bikerê**

Kursîyeran ra mamosta Alî Fuad ke bi eslê xo Licê ra yo û Dîyarbekir de malimîye keno, va "Nika ez tirkî zana, lehçeyanê kurdî ra zî ez zazakî û kurmancî zana. Min waşt ez lehçeyanê bînan zî bimusî. Seba ke têkilîya ma û kurdanê Başûrî, kurdanê Rojhelatî xurt bibo, eno îmkanêko zaf baş o. Mamoste Seywan Seîdîyan weş derse dano, ma te ra memnunî. Înşalah ma dewam bikerin û ma bixebitîn, ma go soranî bimusin."

Ancî kursîyeran ra malima înglîzkî mamosta Aynur ke kurmanca Nisêbînî ya û Diyarbekir de ciwîyena, derheqê kursî de aye zî wina fikrê xo beyan kerd, va "Ma Weqfa Îsmaîl Beşîkçî rê zaf sipas kenê ke ma rê no firset viraşt. Mi zaf waştêne ke ez soranî bimusî. Ez hem mamostatîya înglîzkî kena û hem zî tercumanî kena. Semedê tercumeyî zî no kurs zaf muhîm o. Ez wazena înglîzkî ra bi soranî, soranî ra bi înglîzkî tercume bikerî û lehçeyê ma yê bînan zî bimusî. Bi no armanc min waşt ez bêrî kursê sorankî. Kursî weş dest pêkerd. Mamosta Seywan baş ziwan musneno. Ez zî xo ziwannas vînena. Ey sere de bi soranî dest pêkerd. Ziwan ana hîna weş yeno famkerdiş. Sere de, musayîşê yew ziwanî de gramer zêde lazim nîyo. Mamosta zî bi nê zanayîşî derse dest pêkerde. Ez hêvîdar a ke kurs bi no qayde dewam bikero."

Mamoste Seywan Saedîyan kam o?

Seywan Saedîyan Kurdîstanê rojhelatî ra yo. 1972 de dayîka xo ra bîyo. Sinifê yew û di yê mektebê verênî Pîranşar de wendê. Dima heta lîse, Mahabad de wendo. Lîse de beşê mîmarî ra mezun bîyo. Rojhelat de huner parçeyêkê cuya yo, bitaybetî zî muzîk û deyîrî. Ciwankarî û meslegê hunerî zafê keyeyan de estê. Şîir û edebîyat zaf yenê heskerdene, bi hawayêko pêroyî şar huner ra hes keno û hurmet nîşan danê. Keyeyê înan de zî yew birayê ey hem xettat û hem zî resam biyo. Mamosta Seywan qicekî ra, înan het bîyo pîl. Serranê 1994-1995 ra sey weçînayîşêkê cuye dest bi karê hunerî kerdo. Nika bî davîst serrî ke cuya xo de tena mijulê hunerî yo.

Seke o zî vano despêkê hunerê ey sey xettatî biyo, la ancî zaf waran de zî xebitîyayo. Badê xettatî dest bi resamîye kerdo, bi fotografkarî zî mijul bîyo. Wextêk sînema dir zî eleqedar bîyo, bi xo kurtefîlmêk viraşta û sey dîzayner zî xebitîyayo. Serra 2003'an ra pey Kurdistanê Başûrî de ciwîyayo. Na serre ra pey mamosta Seywan Saedîyan debara cuya xo karê grafîk-dîzaynerîye ser o saz kerdo. Nê hîrê-çar serrî yê ke giranîya xebata xo ya hunerî daya viraştişê heykelan ser, yanî o bi xo heykelan virazeno. Na xebatê ey a peyîne bi nameyê "pêşangeyê heykelanê asinan" reya hîrine, Dîyarbekir de miyane 18-30 teşrîna peyêne 2015 de abi. Zaf kesan eleqe nîşanê pêşangeyê ey da.

**Weqfa Îsmaîl Beşîkçî**

Weqfa Îsmaîl Beşîkçî 2012 de Îstanbul de ronîyaye. Şubeyê xo yê Dîyarbekirî zî roja 23.11.2014 de akerd. Goreyê melumatê ke îdarekaranê Weqfe dayî, şûbeyê Diyarbekirî yê weqfa Îsmaîl Beşîkçî hetanî nika xebatê zaf muhîmî kerdê. Destpêk de kursê nuştoxîya kirdkî û kursê musayîşê kurmanckî dayê. Ancî di grûbê wendişî tede aktîf bîyê; yew grûba wendişî ya kirdkî, yew zî grûba wendişî ya kurmanckî. Ancî her roja îneyî şan de yew fîlmê kurdan ameya nîşandayîş ke hetanî nika qasê pancas fîlmî ameyê nîşandayîş. Şûbeyê Diyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî hetanî nika babetanê cîya-cîyayan de gelêk semîner, panel û konferansî zî organîze kerdê.

Yewna fealîyeto muhîm yê Şûbeyê Diyarbekirî yê Weqfa Beşîkçî xebata kitabxaneyî ya. Şûbe de yew kitabxaneyo mutewazî esto ke cigêrayoxî, kesê ke wazenê tezê xo yê lîsansê berzî û doktora binusê, nê kitabxaneyî ra îstîfade kenê.

Murat Özdemir

# Ji bo azadiyê bang dikim



Muzîka rapê li hember sîstemên serdest wek bertek û şêweyekî serhildêriyê tê dîtin û ji xwe bingeha wê jî li ser vî xîmî hatiye avakirin. Rewşa kurdan jî dema mirov da ber hev ji ya reşikên Amerîkayê ku xwediyên vê çandê ne, ne cudatir e. Eger cudatiyek hebe jî em dikarin bêjin ku rewşa kurdan ji ya wan xerabtir e. Ji ber ku ne tenê welatê kurdan hatiye parçekirin û dagirkirin, rastî îmhayê jî hatine û zimanê wan jî hatiye înkarkirin. Ev înkara li ser kurdî wek berê ne hişk û tund jî be dewam dike. Lêbelê tevî hemû astengiyan jî kurdî di hemû warên jiyanê de cihê xwe digire û wek hemû zimanên cîhanê hebûn û dewlemendiya xwe dide der.

Rap jî beşeke Hip-Hopê ye û tê wateya 'rexneya giran'. Ev rexne li hember zordest û desthilatdara ye. Kurd jî bi salane û niha jî di bin zordestiya dijminên xwe de ne û ev rewş û sîstem jî bi çand û muzîka dengbêjiyê rexne kirine. Di Dengbêjiyê de gilî û gazind hatine ziman, rewşa kurdan li ber çav hatiye raxistin û desthilat û zordest jî hatine rexne kirin. Di Rapê de jî şêwaz û rêbaz ev e. Ev muzîk bingeha xwe ji getoyan Amerîkayê digire ku cih û warên reşikan bûn. Ew reşik ji hêla desthilatdaran ve ber bi wan deran ve hatibûn dehf dan. Rap jî li ser vê bingehê ava bû ku li hember sîstema bûye sedem ku ew miameleke wek însanan nebînin serhildêrî û rexne ye. Ji ber wê yekê me rewşa kurdan û reşikan da ber hev.

**Em dikarin Dewran Xerzanî nas bikin?**

Ez Arafîn Qua bi navê fermî Dewran Xerzanî. Di sala 93'an de li bajarê Êlih/Batman ji dayîk bûm, niha 22 salî me û di zaningehê de xwendekar im. Nêzê 6 salan ku ez li ser çanda Hip-Hop dixebitim û muzîka rapê bi zimanê kurdî bikartînim.

**Te çawa destpê kir û çima rap û çawa bala te kişand?**

Bi rastî min ji zaroktîya xwe ve ji muzîkê pir hez dikir. Wek hûn dizanin wê demê (salên 1990-2000) li pêşiya gûhdarîkirina muzîka kurdî astengî û qedexekirin pir bûn, lê dîsa jî heta demekê ez bi muzîka kurdî mezin bûm. Piştî wê demê min fîlmên biyanî temaşe dikir, ji ber ku min çanda wan mereq dikir. Di dema temaşekirina fîlmên biyanî de muzîka wan jî bala min dikşand. Lê bi taybetî muzîka rapê bala min kişand. Çiqas dem derbas dibû min bêhtir lêkolîna muzîka rapê dikir, min bi berfirahî çanda Hip-Hop ê (muzîka rap – hunêra grafiti - breakdance – dj) nasdikir, hunermend nasdikir. Heta ku ez gihîştim asta gotina xwe ya " Êdî divê ez jî vê muzîkê çêbikim". Piştî min ev gotin ji xwe re got, min li gor derfetên xwe dest bi çêkirina mûzîka rapê kir.

**Gelo tu dikarî bi kurtasî qala form û dîroka rapê bikî?**

Di sala 1970'an de li Amerîkayê rewşên mirovên reşik pir dijwar bû. Mirovên reşik ji bo kû xwe ji derdên jîyanê dûr bêxin, ji xwe re çandek nû afirandin, navê wê çandê jî Hip-Hop danîn. Hip-Hop bibû çanda bindesta. Ger ku em Hip-Hopê wek darekê bifikirin, di nava çanda Hip-Hopê de 4 şax hene; muzîka rap, hunêra grafiti, breakdance û dj. Di derbarê mûzîka rapê de 3 tişt têne gotin. 1: Rhytm And Poem (Rîtîm û Helbest), 2: Rhytmic African Poetry (Helbesta Afrîkayê ya bi Rîtîm), 3: Di zimanê îngîzî de tê wateyê 'rexnekirina dijwar'. Wek kû min got Hip-Hop çanda bindesta ye, lê bi taybetî mûzîka rap dengê serhildana bindesta ye. Ji ber wê yekê îro çanda Hip-Hop û mûzîka rapê li her derê cîhanê belav bûye.

**Tu rapa xwe li ser kîjan hêmanan ava dikî (naveroka wê çi ye, rewş û taybetmendiyên kurdan di muzîka te de cih digirin?**

Wek hûn dizanîn muzîk gerdûnî ye û gor min divê naveroka gotinan jî gerdûnî be. Her tişt ne tenê li ser evîndarîyê bê gotin, divê li ser rewşa cîhanê û jîyanê jî bê gotin. Di jiyanê de tiştên gelek xelet hene, di serî de sîstema jiyanê xelet e. Divê hunermend vê sîstema xelet di berhemên xwe de rexne bike. Ji bilî rexnekirina sîstema jiyanê û peyamên gerdûnî, bi taybetî ez di behremên xwe de qala rewşa gelê xwe dikim, ji bo yekîtî û azadiya gelê xwe bang dikim. Di dawî de jî, ez zimanê xwe wek çeka xwe dibînim.



Ciwanê kurd Dewran Xerzanî derd, gilî û gazindên xwe û civaka xwe bi rapê tîne ziman. Dewran Xerzanî ji zaroktiya xwe û vir ve bi karê muzîkê re mijûl e û vî formê muzîkê yê rexnegir û serhildêr bi kurdî pêk tîne. Em li ser kar, xebat û muzîka rapê bi Dewran Xerzanî re axivîn. Xerzanî dibêje di jiyanê de gelek tiştên xelet hene, di serî de sîstema jiyanê xelet e. Divê hunermend vê sîstema xelet di berhemên xwe de rexne bike.

**Di çand û hunera kurdî de cihê dengbêjiyê cuda ye û weke bingehekê tê dîtin. Gelo tu nêzîkahî di navbera dengbêjî û rapê de hene?**

Belê, bingehiya dîroka muzîka kurda dengbêjî ye. Di navbera dengbêjî û muzîka rapê de jî nêzîkahî gelek heye. Dengbêj jî hunermendê rapê jî di dawîya hevokan de hevdeng bikartînin, gotinên xwe bi lez û gor rîtima awaza dibêjin ku bixwazin gotinên xwe li ser enstrumanan dibêjin û bixwazin jî tenê bi dengê xwe dibêjin, di berhemên xwe de bi berfirahî qala jiyanê dikin hwd. Bi kurtasî dengbêjî û muzîka rap pir nêzîk hev in. Ji xwe hin kes di derbarê muzîka rapê de dibêjin ku rap mûzîk ji dengbêjî hatîye afirandin. Raste an ne raste nizanim lê dibe ku rast be, ji ber ku dîroka dengbêjiyê ji mûzîka rapê bêhtir kevne. Divê ez vê jî bêjim, ez ji dengbêjan gelek hez dikim û ji bo min hêja ne, di serî de Dengbêj Şakiro û hemû dengbêjan bi rêzdarî silav dikim.

**Weke tu jî dizanî dirûv û awazê rapê li hember desthilatdariyê wek serhildêriyê tê nirxandin. Gelo dema ku em rewşa kurdan li ber çav bigirin tu wê vê yekê çawa şîrove bikî, nêrîna te çi ye?**

Mixabin, em tenê ne li welatekê li 4 welatan perçe bûne, belav bûne û di 4 welatan de jî tên pelçiqandin û zordarî li ser serê me heye. Ew 4 welatan jî dixwazin me tûne bikin lê divê em li hember wan û armanca wan bisekinin. Divê em çanda xwe, zimanê xwe roj bi roj li pêş bixin, nasnameya xwe, dîroka xwe qet jibîr nekin û lê xwedî derkevin. Divê her kes di beşa xwe de li ber xwe bide. Ez jî bi muzîka rapê serî hildidim û dibêjim 'êdî bes e.' Û ez jî di beşa muzîkê de heta ku ji min tê li ber xwe didim, tekoşîna xwe bernadim, bi muzîka rapê serîhildidim û dibêjim 'êdî bes e.' Û di beşa xwe de ez dikarim vê tiştê pêşnîyar bikim, ciwanên kurd divê bêhtir muzîkên serhildêr yên wek rap û rock gûhdar bikin û bikar bînin. Wê li gor wiha behtir nêrîna xwe azad bêjin.

**Dema te dest bi vî karî kir ku hejmara kesên rapa kurdî dikin ne zêde ye, te ji malbat, derdor û civakê bertekên çawa dîtin?**

Mixabin! Niha jî kesên ku muzîka rap a kurdî bikartînin ne zêde ne. Ez hêvîdarim em ê roj bi roj zêde bibin. Dema min li Êlihê dest bi muzîka rapê kir sal 2010 bû û li derdora min rappervan ku stranên xwe bi zimanê kurdî digotin tune bûn, tenê ez bûm. Niha jî li Bakurê Kurdîstanê de rappervanên kurd ji 10 kesan derbas nabin. Dema destpêkê malbata min bi erênî nedinêrîn, tenê dixwastin ku ez bala xwe bidim dibistana xwe. Hevalên min jî alîkarî ne didan min lê dema min stranan çêdikir ez pîroz dikirim.

**Bandora tu kesê ku rapê dike li ser te û hunera te heye gelo?**

Di cîhanê de ez ji gelek rappervanan hezdikim û bandora wan li ser min heye. Wek mînak ez dikarim bêjim; Tupac, Azad, İmmortal Technique, Keny Arkana, Damian Marley, Hopsin, Vinnie Paz, Nas, Eminem, İce Cube hwd. Li Ewropayê jî gelek rappervanên kurd hene ku bi zimanê biyanî distrên, wek Lowkey, Xatar, Dillin Hoox, Haftbefehl, Kurdo, Kc Rebbel, Bero Bass, S. Castro hwd. Ez ji wan jî hezdikim û dişopînim. Ji bilî rap û rappervanan bandora Bob Marley û John Lennon jî li ser min heye. Ais Ezhel, Rapzan Belâgat, Rêzan, Tolhildan, Berf û Cemed, Reqso ji ji bo min rappervanên hêja ne.

**Xebatên te di kîjan astê de ne û tu projeyên te hene?**

Herî dawî beriya 2 mehan min stran û vîdeo klîba xwe ya nû bi navê 'Dîko' par vekir. Bi rastî ev 3 sal e hin pirsgrêkên taybetî çêbûn di jiyana min de û ji ber xwendekariyê ez ji muzîka rapê hinek dûr ketim. Lê di nava wan rewşên dijwar de jî min dîsa stran çêkirin. Di demekî nêzîk de ez ê bi 2 rappervanên hêja Ais Ezhel û Rapzan Belâgat re 2 stranên nû tomar bikim. Û dîsa di demekî nêzîk de ez ê bi hunermendê kirmanc Hasan Alî re jî stranek çêbikim, Hasan Alî wê bi zarawayê kirmanckî bêje ez ê jî bi kurmancî bêjim. Piştî wan projeyan ez ê bi koma rock a kurdî Stêrka Karwan re jî stranekê tomar bikim. Ji bo pêşerojê projeyên min ji bo albûmekê hene, lê divê pêşî ez zaningehê biqedînim.